

لە ئەڵمانیا
**شۆفێری ئیتاڵی پیتزای کوردی دەبەن بۆ ماڵان**
6 ◄

سەرۆکی دەستەی نەزاهەی یەکیتی:
**سامانی مام جەلال کەمترە لە ملیۆنێک دۆلار**
5 ◄




# Rûdaw
ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin


**HEVPEYVÎN**

Rojnameger û Nivîskar Emerîkê Serdar:
**Riya Teze ewledê min e, ez ewledê Riya Teze me!**
Di rûpela 11'an de

**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

**Hejmar / Nr. 43** | 4 Gulan / Mai 2010 | **www.rudaw.net**

# BDP temsîla çi dike?




**Hikûmeta Tayyip Erdogan bawer e ku Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) ne serbixwe ye û fermanên Abdullah Ocalan bi ci tîne**

Di van rojan de dengdan û bazarên li ser guhertina makezagona Tirkiyê di pengaveke nazik re derbas dibin. Li aliyekî pêşniyarên AKP'ê ji gelek aliyan ve piştgiriyê distînin, ji aliyên kurdî jî. Lê helwesta BDP'ê ya piştgirînekirina pêşniyarên AKP bû cihê gelek nîqaşan, hem di nav kurdan de û hem jî di nav BDP bi xwe jî: çendîn endamên naskirî yê BDP'ê anî ziman ku ew bi vê helwesta partiya xwe dilgiranin, di nava wan kesan de Ahmet Türk û Ûfûk Ûras jî hebûn. ▶ 2/5/14

## Êrîşa li dijî kovara Wêran azadiya çapemeniyê li Başûr xist rojeve

Di van rojên borî de li Başûrê Kurdistanê di navbera rewşenbîr, sekûlerên kurd, mele û partiyên îslamî de dîsan pirsgirêk derket û daxuyaniyên cuda hatin belavkirin. Çavkaniya vê kirîzê jî çîrokek erotîk bû ku di kovara Wêran de hat weşandin.

Tevî ku ew çîrok beriya heştsed salan ji aliyê zanayekî misilaman ve hatiye nivîsandin, lê hin meleyên paytexta Kurdistanê êrişên tund birin ser xwediyên kovarê, ew wek "bê exlaq" bi nav kirin, daxwaz kirin ku sînorek ji wan re bê dayîn û ew bên hevsarkirin. Ji aliyekî din ve partiya Yekgirtûya Îslamî jî rexne li kovara Wêran kir. Helbestvanê kurd Şêrko Bêkes ji tevlî guftûgoyan bû û daxuyand: "Kovara Wêran kirin hincet, lê armanca wan neyartîkirina ronahî, demokrasî û ramanên sekûler e." ▶ 3

## Êdî TRT-6 bê Stêrk e

Şanokara kurd Nîştî Stêrk jî ji TRT-6 veqetiya. ▶ 16



## Yekbûn berdewam e

Niha jî baskên Komeleyê dixwazin dubare hev bigirin. ▶ 5

## Konferansa Kerkûkê

Ji kurdan re gotin: Ew pirsgirêka we ye! ▶ 6

## Kovara Hevjîn tê

LGBT'ên kurd bi kovarek bi kurdî dibêjin merheba. ▶ 8

## Li Sûriyê 381 cotkarên kurd bêwar dibin

Roj bi roj desthelatdariya Baas li Sûriyê astengiyên zêdetir li kurdên Rojavaya Kurdistanê re çêdike. Ew dewleta erebî di hemû waran de mafên kurdên di nav sînorê xwe de binpê dike û dibe sedema ku rewşa wan ber bi xirabiyê ve biçe. Nûtirîn pêngava dijminkariya Hikûmeta Sûriyê biryara hejmar 2707 bû ku di roja 13'ê Nîsan a borî de hat derxistin. Li gor wê yasayê pêwîste bi sedan cotkarên kurdên rûniştvanên gundên navçeya Dêrikê dest ji zeviyên xwe berdin. Ev jî tê wateya ku bi sedan malbatên wan cotkarên ku debara xwe bi çandinê dikin, rastî bêkarî û hejariyê bên û neçar bibin gund û warên xwe bihêlin. ▶ 4

## Çendîn kurd berendamên Parlamena NRW ne

Di 9'ê Gulanê de hilbijartinên herêmî li Almanya, li eyaleta Nordrhein Westfalen (NRW) pêk tên. Nordrhein Westfalen bi 18 milyon mirov eyaleta Almanya ya xwedî hêrî zêde niştecih e. Tevî ku derdora milyonek kurd li Almanyayê dijîn – û bi piranî jî li vê eyaletê - wekî salên borî îsal jî xebatek berbiçav a saziyên kurdî li Almanyayê ji bo beşdarbûnek xurt di van hilbijartinan de nehat kirin. Lê dîsa jî çendîn kurd di nav partiyên cuda de wekî berendam beşdarî hilbijartinan dibin. Herî zêde kurd di nav Partiya Çep "Die Linke" û Partiya Keskan "Die Grüne" de berendam in. Rûdaw çarên wan berendaman dide nasandin. ▶ 6/7





# BDP li mîsyona xwe digere

**Enqere (Rûdaw) –** Guftûgoyên derbarê guhertina makezagona Tirkiyê gelek kevirên bingehîn ji cihê xwe leqandin. Bi taybetî partiyên CHP û MHP di guhertina makezagonê de dijber in û ji bo ku AKP di guhertinê de bi ser nekeve, her dek û dolaban digerînin. Lê di vir de partiya ku bi siyaset û helwesta xwe herî zêde awira gelemperiya kurd û tirk ecêbmayî dihêle, Partiya Aştî û Demokrasiyê - BDP ye. BDP bi helwesta xwe ya derbarê guhertina makezagonê de gelek caran di refê CHP û MHP de tê dîtin û li dijî guhertina makezagona 1980'î derdikeve.

Her çiqas di guhertina madeya 8'an a makezagonê de BDP destekek temsîlî da AKP'ê jî, lê BDP'ê ti guhertinek berbiçav di siyaseta xwe de nekiriye û dijberiya Erdogan û hikûmeta wî didomîne. Ev helwesta BDP dibe sedem ku di serê wekîlên wê bi xwe û di serê gelek kurdan de jî pirsgirêk û pirs çê bibin. Tevî ku BDP û partiyên beriya wê herî zêde bûne mexdûrên makezagona 1980'î, lê ew dîsa helwesta xwe diparêze. Lê wiha dixuyê ku ev helwest û siyaseta ne zelal a BDP wê serê wê bi xwe jî bêşîne, ji ber ku ji niha ve hinek wekîlên wê dest bi gazindan kiriye û matmayî mane ka çima partiya wan di vê babeta giring de refgiriya partiyên wek CHP û MHP dike.

## Şertê bingehin yê demokrasiyê

Guhertina makezagona Tirkiyê weke şertê bingehîn ê demokrasî û bicîhbûna mafê mirovan tê dîtin û makezagonek demokratîk û mafdar ji tirkan zêdetir ji kurdan re pêwist û girîng tê nirxandin. Gelek rewşenbîr û siyasetmedarên kurd di vê baweriyê de ne ku guhertina makezagona heyî di berjewendiya kurdan de ye û gerek BDP helwest û siyaseta xwe di ber çav re derbas bike. Di vê derbarê de hevserokê berê yê DTP'ê û endamê BDP Ahmet Turk ji kovara tirkî Aksiyonê re daxuyand ku ew li hember helwesta partiya xwe aciz dimînin û nikarin bersiva gelê xwe bidin. Turk eşkere got ku refgirtina di rêza CHP û MHP de wan û gelê kurd aciz dike û ev helwest wan di bin tohmetek giran de dihêle. Herweha piraniya rewşenbîr û nivîskarên tirk ên ku alîgirên guhertina makezagonê ne, matmayî ne û helwesta BDP rexne dikin.

Ji aliyê din tê gotin ku endamê BDP û wekîlê Sêrtê Osman Ozçelîk jî nerazîbûna xwe aniye zimên û gazinc ji helwesta partiya xwe kiriye. Ozçelîk ji Rûdawê re da zanîn ku daxwazên wan ji alî hikûmetê ve nehatine qebûlkirin û ger daxwazên wan neyên qebûlkirin, ew ê nedin dû AKP lê ew nexwazin di refê CHP û MHP de jî cîh bigrin.

Yek ji gazincaran jî dîsa wekîlê BDP'ê yê Stenbolê Ûfûk Ûras e. Ûras radigihîne ku "ew ê nehêlin hejmara dengên ji bo guhertina makezagonê têkeve binê 330'î û ger pêwist bû ew ê li partiya xwe guhdarî neke, dengê xwe bide guhertina makezagonê." Ûras da zanîn ku guhertina makezagonê girîng e, gavên baş tên avêtin lê helbet ev bersiva gelek daxwazan nade. Herweha wekîlê BDP'ê Hasîp Kaplan jî got ku "ger xwîna taze pêwist bû, ew ê têkevin dewrê û alîkariyê bikin."

Piştî van daxuyaniyên wekîlên BDP, Cîhgirê Serokê Grûpa BDP Bengî Yildiz mecbûrî daxuyaniyekê ma û got ku wekîl bîr û raya xwe dibêjin, lê wek partî wan biryarek bi vî awayî nestendine. Yildiz got ku di helwesta partiya wan de ti guhertin nehatine kirin û AKP ji bo daxwazên wan ti gav neavêtine.

## Xetên sor tên parastin

Piştî derketina dîtinên cuda, BDP civîna xwe li dar xist û di civînê de biryara "parastina xetên sor" hat qebûlkirin. Ango AKP a ku hêviya destekê ji BDP dikir, weke ku dixuyê, bi ser neket û BDP dîsa pişta xwe da AKP û guhertina xalên destûra bingehîn. Her çiqasî destekirina guhertina xalên makezagonê ji alî hinek welîkan ve hat pêşniyazkirin jî, lê ev pêşniyaz ji alî rêvebiriya BDP ve nehat qebûlkirin.

Biryara civîna BDP, AKP xeyalşkestî kir. AKP hêvî dikir ku BDP helwesta xwe biguherîne û ji CHP û MHP re nebe alîkar. Ev helwesta BDP di nav kurdan de jî bûye ciyê pirs û nîqaşê. Ji aliyê din herdu partiyên ku dixwestin bi BDP re hevkariyek netewî çêkin, HAK-PAR û KADEP jî dest bi gazindan kirine, siyaset û helwesta BDP rexne kirin.

Daxuyaniyek din a balkêş ji seroke PKK'ê Abdullah Ocalan hat. Ocalan di hevdîtina xwe ya vê heftê de bêyî ku navê Ahmet Turk bide, helwesta kesên mixalif rexne kir û daxwaza lidijderketina AKP ji alîgirên xwe kir. Gava mirov helwest û rexneyên tevayî tîne ber hev, tê dîtin ku BDP di nava xwe de dikele û bive neve wê ev alozî bandora xwe li ser dahatuya BDP û helwesta kurdan li beramberî wê jî bike. ▶ 5/14

## “Bi rastî BDP nikare tiştekî bike’


Muhsin Kızılkaya

**Rûdaw: Gelek kes dibejin ku ev hewldanên AKP'ê yên dawî ji bo çareserkirina pirsa kurdî piştgir in. Çima BDP piştgirek tam nade AKP'ê?**
Muhsin Kızılkaya: Bi rastî em jî vê pirsê dikin. Ez jî fêm nakim ka çima BDP û kurdên alîgirên wê piştgiriya demokratîkbûnê û AKP nakin. Beguman şertên wan hene ku ew deynin pêş AKP'ê. AKP jî dibeje ez vê gavê nikarim van şertan pêk bînim. Lê ew tiştên ku AKP dike ji bo başiya kurdan e jî. Yanî eger şertê te nehat qebûlkirin, tu ji ber gelek tiştan bireve, bêguman ev nebaş e.

**Rexneyên BDP jî hene, ew dibeje pêşniyarên me ji aliyê AKP'ê li ber çav nayên girtin, ji ber wê yêkê em piştgiriyê nadin wan.**
Ew pêşniyarên wan gelek jê ji aliyê AKP'ê vê têne bicihkirin, yanî gelek pêşniyarên AKP ew pêşniyarên kurdan e jî. Yanî îro tu piştgiriya pêşniyarên AKP bike, sibe dor tê pêşniyarên te jî. Lê dema tu bêjî eger tu pêşniyarên min qebûl neke, ez piştgirî nadim, wê deme tu zirarê dighijînê xwe, fişekê li lingê xwe dixe.

**Gelo pêwîst e AKP bi fermî beje ez daxwazên BDP qebûl dikim?**
Bêguman gelekî zor e. Ji ber ku li aliyekî BDP van tiştan dixwaze, li aliyê din PKK askeran dikuje. Em bêjin ew şertên BDP qebûl bikin jî, wê xelk rabe ji wan re beje, vaye şer dewam dike, esker tên kuştin. Tu bêjî eger ew operasyonan bidomînin, ezê şer berdewam bikim, bi vê yekê operasyon wê rawestin? Na! Dema tu bi rasî bixwazî şer raweste, pêwîste tu gaveke mezintir baveje, ji ber ku yê aştiyê dixwaze tu yî. Beriya her tiştî pêwîstiya te bi aştiyê heye.

**Her ku hinek gav tên avêtin, hinek buyer jî diqewimin. Van rojan jî dîsa lêşker hatin kuştin, di demekê de ku hewldan guhertina makezagonê hene. Ev çi mesele ye?**
Beriya niha bi hefteyekê hinek rojnameyên tirkan belav kirin ku PKK wê baveje ser fîlan qereqolan, nav dan, û PKK avêtin ser wan jî. Bi rastî jî mirov vê yekê fam nake. Her dema ku hinek guhertin pêk tên, hinek tiştên baş tên çêkirin, di heman demê de bûyerên wiha diqewimin. Bi rastî ez jî vê yekê tê nahigim, fam nakim.

**Ji bo ku BDP ji vê tewanbariyê xilas bibe, pêwîste çi bike?**
Bi rastî BDP nikare tiştekî bike, ji ber ku BDP bi serê xwe tevnagere. Fikra wan bi xwe tune ye. Dema dixwaze gavekî baveje, li benda Îmraliyê disekine. Abdullah Ocalan tiştekî dibeje û ew paşê hereket dike. Eger di vê demê de polîkayek BDP ya serbixwe hebana, wê demê mivov dikarîbû tiştekî ji wan bixwesta.

**Wê demê hikûmet nikare bibe piştgir û BDP ji vê rewşe rizgar bike, yanî BDP weke muxatab qebûl bike?**
Lê BDP dibeje muxatab ne ez im, muxatab Îmralî ye. Dibêjin herin bi Abdullah Ocalan re bipeyivin, bi yên li çiyan biaxifin. Dema wisa jî dibejin, dewlet jî nikare van şertan pêk bîne.




Rûdaw
Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Serokê Civata Rêvebir
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

Sernûser
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

Redaksiyon
Firat Kelehkî (FK)
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî (AK)
azadkurdi@hotmail.com

Besam Mistefa (BM)
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir (SBE)
sidar@rudaw.nl

Dîzayner
Memo Celâl

Îdare û belavkirin
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

Şêwirmendê yasayî û aborî
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# "Ew Meleyên ku îro daxwaza hevsarkirina me dikin, sibê wê daxwaza serê me jî bikin"

**Rêbend Sedula** Hewlêr

Babeteke wêjeyî ya kovara Wêran a ku ji aliyê Dezgeha Aras li Hewlêrê tê çapkirin, bû sedem ku serok û çend endamên Komîteya Karûbarên Ewqaf û Olî li Parlamena Kurdistanê li dijî wê kovarê dozê vekin. Piştre jî kovar ji aliyê çend meleyên Hewlêrê û Yekgirtû ya Îslamî ket ber rexneyên dijwar.

Sernivîskarê Kovara Wêran, Ferhad Pîrbal, di bersiva van êrişan de dibêje: "Mirovên xwedî wijdan û xwendevanên xwedî exlaq ên kurd ji wan mele û Yekgirtû ya Îslamî pirs dikin, gelo hûn çima daxuyaniyekê li dijî mamosteyê hemû Meleyên Kurdistanê, Elaedîn Secadî naweşînin!? Ku di pirtûka "Riştey Mirwarî" de bi dehan çîrokên erotîk, seksî û pêkenokên seksî derbarê jiyana meleyên Kurdistanê jî nivîsîne."



**Ferhad Pîrbal**

Yekgirtû ya Îslamî di daxuyaniyekê de wiha nivîsandiye: "Armanca Wêran wêrankirina rewşa exlaqî û têkdana ewlehiya civakî û hilweşandina pêkhateya malbatê ye." Hejmareyeke nivîskaran di daxuyaniyekê de bi tundî ew helwêsta Yekgirtû şermezar kirin.

Berpirsê Buroya Ragihandina Yekgirtû ya Îslamî, Hamid Mihemed Elî, ji bo Rûdawê got: "Hin nivîskar bi şaşî fêm dikin. Daxuyaniyê tenê daxwaza dadgehkirina kovarê û redaksyona wê kiriye." Tevî ku herdu endamên Polîtburoya Yekgirtû ya Îslamî, Mewlud Bawe Murad û Ebubekir Elî dibêjin ku ew daxuyanî ne nerîn û helwêsta Yekgirtû ne, lê Hamid Mihemed diyar kir ku "Bo weşandina wê daxuyaniyê, nerîna endamên partiyê hatiye wergirtin û ew ne tenê dîtina kesekî ye."

Di sala 1990'an de, dema ku pirtûka 'Riştey Mirwarî' di kitêbxaneyên Kurdistanê de nema, Dezgeha Çap û Weşangeriya Serdem ew dubare çap kir. Rêvebirê dezgehê Şêrko Bêkes dibêje: "Riştey Mirwarî ji karên me yên herî baş bû, nizanim çi pê hat, lê em ê di demeke din de hejmareyek zêde ya dîwana Şêx Reza Talabanî biweşînin." Ew bersivdana Şêrko helwêstek bû bermaber qedexekirina berhemên wêjeyî. Bi taybet piştî ku hejmareyek meleyên mizgeftan û partiyên îslamî kovara Wêran protesto kirin û wek 'bê exlaqî û sivikirina pîroziyên olî' tometbar kirin. Helbestvan Şêrko Bêkes ji bo Rûdaw herwiha got, "Ger mele û partiyên îslamî gotina giştî derbarê ol de dikin, azad in. Lê dema êrîşê dikin ser azadiya takekesî, dezgehan û kovar û helbestvanan, pirs ji şêweyê normal derbas dibe."

Bêkes li ser gotina îmamê mizgefta Rûnakî ya Hewlêrê, Mele Evdilxaliq a li ser dezgeha wî "Serdem" û Dezgeha Aras ku gotibû "Divê herdu dezgehên Aras û Serdem bên hevsarkirin!" got: "Ev meleyê bêyî şerm ku daxwaz dike hevsar bikin serê me, wê sibe daxwaza birîna serê me jî bike." Herwiha Bêkes dibêje: "Kovara Wêran kirin hincet, lê armanca wan neyartîkirina ronahî, demokrasî û ramanên sekûler e."

Hikûmeta Kurdistanê derbarê vê pirsgirêkê bêdengî hilbijart. Li gor Bêkes: "Desthilata Kurdî derfet da meleyan, ew li ser her tiştî bûne zêrevan, li ser hişê me, cil û bergên jinên me, vexwarin, muzîk û stranan jî. Diyar e ku "ronahiya kesk" ji wan re hatiye pêxistin."

Di van dawiyan de peywendiyên oldar û nivîskaran rastî kirîzan tên, Bêkes dibêje: "Ger ew berbi tundbûnê biçin û berdewam bin, em ê dakevin kolanan. Bi baweriya min, divê em biçin pêş mizgefta Rûnakî û sloganên xwe bavêjin û ji wan re bibêjin em mirov in, em ne ker in ku hûn me hevsar bikin!" Sernivîskarê Wêran, Ferhad Pîrbal got: "Ev şer di navbera sekûlarîzm û dewletan û tundrewan de ye."

# Tevgera Goran diçe kongrê

**Kawe Şêx Ebdulla** Silêmanî

Ger Noşîrwan Mistefa bi gotina Umer Kakemîn bike, ew qet Goranê nake partiyek ku "buro û kadroyên wê hebin." Kakemîn ku temenê wî 48 sal in û rûniştevanê Silêmaniyê ye, dibêje ku wî di herdu hilbijartinên parlamenê Îraq û Kurdistanê de, bo Lîsteya Goran kar kiriye: "Lê ger Goran bibe hizb, min ne bawer e ez li gel wê bimînim."

Ev meheke Tevgera Goran daxwaza mohletê ji Wezareta Navxwe kiriye. Berî demekê jî Serokê Tevgera Goran, Noşîrwan Mistefa, gotibû "Em ê modeleke nû ya partîtiyê bidin pêşiya xwe, ku cuda be ji modela partiyên kurdî. Partiya me wê ne dogmatik û îdeolojîk be." Tevgera Goran ku li Parlamena Kurdistanê 25 û li Parlamena Bexda jî 8 kursiyên wê hene, gihaye qonaxa ku biryardan tê de dijwar e, gelo wê çarenûsa vê bizavê bigihînin kû?



(Wêne: Rûdaw)

**Noşîrwan Mistefa**

Endamê berê yê Polîtburoya YNK'ê, Mistefa Seyid Qadir, ku niha serkirdeyekê Tevgera Goran e, dibêje ku ew hewl didin tevgera xwe bidin serhev û bihêztir bikin. Qadir dibêje, Tevgera Goran wê di demeke kurt de kongra xwe girêbide "Lê hê ne diyar e kengî û li ku. Tevgera Goran natirse ku kongrê xwe girêbide."

Gelek alîgirên Tevgera Goran bo Rûdawê dan zanîn ku ew naxwazin Goran bibe partiyek û dibêjin: "Ji ber bêzarbûna xelkê ji partiyan, hejmara alîgirên Goran di demeke pir kurt de zêde bû." Lê kesên ku berê di nav YNK'ê de bûn û niha tevî Goran bûne diyar dikin ku baştire Goran xwe di çarçoveya partiyekê de bide serhev.

Umer Kekemîn hawlatiyekê Silêmaniyê ye, dibêje: "Di hilbijartinan de tiştê ji min hat min bo Goran kir, bêyî ku haya wan ji min hebe yan hinek qazancan bidestve bînim. Lê tenê ji bo ku ew me ji bin destê neheqî û gendeliyê rizgar bike." Niha Umer dema dibihîze wê Goran bibe hizb, pir dilgiran dibe: "Xelk ji partiyan bêzar bûye û têr ji destê wan xwar, ji nû Goran dest pê dike? Ger Goran bibe hizb ez qet berê xwe nadimê."

Tiştê ku Goranê ji partî û aliyên din cuda dike, ne zelaliya hejmara alîgirên wê ye. Serokê Saziya Hilbijartinan a Tevgera Goran, Aram Şêx Mihemed, bo Rûdawê ragihand: "Goran nizane kongreyê ji kê re girê bide. Goran wê ji hêz û partiyên din cuda bimîne. Biryardan ji jêr ber bi jor dibe."

Partiyên li Herêma Kurdistanê li gor hejmareke diyarkirî ya endamên xwe, kongreyan girêdidin. Wek mînak PDK di kongreya xwe de ji bo her hezar endaman nûnerekî destnîşan dike, YNK'ê jî bo her 500 endaman nûnerekî datîne, lê ji ber ku Goran bi awayekî rêzbendî nehatiye rêxistin, ev kar zehmet e. Aram destnîşan dike ku ji ber belavbûna alîgirên wê, li ba serkirdên Goran ne diyar e çawa kongre girêbidin: "Lê çi dibe bila bibe, divê ev tevger bê rêkxistin."

Du baskên Komele mijûlî yekgirtinê ne

# Omer Îlxanîzade û Ebdula Muhtedî bihev re dicivin

## Piştî parçebûnê ser bi çend baskan, aliyên cuda yên Komele ya Rojhilatê Kurdistanê di hêviya yekbûnê de ne

**Hewlêr (Rûdaw) –** Komeleya Şoreşger a Zehmetêkêşên Kurdistana Îranê û Komeleya Zehmetêkêşên Kurdistanê, ku du aliyên sereke yên parçebûyî yên Komeleyê ne, bi armanca yekgirtin û xebata hevbeş li bajarê Silêmaniyê dicivin û berpirsê yek ji wan baskên Komelê diyar dike, civîna wan di asteke bilind de cîhê kêfxweşiyê ye.

Parçebûnên van salên dawî tevgera siyasî ya kurdî li Rojhilatê Kurdistanê rastî lawaziyê kiriye. Komele yek ji wan rêxistinan e ku herî zêde perçebûn tê de çêbûne.

Piştî wê perçebûna ku sala 2007'an di nav refên Komeleya Şoreşger ya Zehmetêkêşên Kurdistana Îranê de çêbû û baskek bi navê Komeleya Zehmetkêşên Kurdistanê bi serokatiya Omer Îlxanîzade bi fermî ragihand, heta vê dawiyê ti civînek di navbera her du aliyan de çênebûbûn.

Meha borî her du aliyên Komele bi mebesta ji hev nêzîkbûnê li Silêmaniyê civiyan. Omer Îlxanîzade berê derbarê wê civînê ji Rûdawê re ragihandibû: "Civîn dostane bû û hê negihaye wê asta ku şanda fermî ya her du aliyan gotûbêjan bikin." Lê du hefteyan berî niha, bo cara yekemîn piştî sala 2007'an, sekreterê her du aliyan, Ebdula Muhtedî û Omer Îlxanîzade, bi hev re civîn çêkirin. Endamê Polîtburoya Komeleya Şoreşger ya Zehmetêkêşên Kurdistana Îranê, Mihemed Şafeî, piştrast kir û got: "Belê, hevdîtin çêbûye, me û hevalên ku berê bi me re bûn, civîn çêkiriye." Lê Şafeî derbarê naverok û armancên wê civîna hevbeş a her du aliyên Komele zanyariyên berfireh nedan: "Me her du aliyan li hev kir ku carê li ti cih û medyayekê derbarê vê civînê daxuyaniyan belav nekin, da ku proses di pêvajoyeke aram û baş de bimeşe." Ew endamê Polîtburoya KŞZKÎ bi wan cor civînan geşbîn e û got: "Çi di şiyana me de be, em ê bikin ji bo ku civîn û danûstan ber bi pêvajoyeke erênî bimeşin."


(Wêne: Rûdaw)
Omer Îlxanîzade


(Wêne: Rûdaw)
Ebdula Muhtedî

Sekreterê Komeleya Zehmetêkêşên Kurdistanê, Omer Îlxanîzade, derbarê wê civînê ji Rûdawê re eşkere kir ku wan her ji destpêkê ve daxwaza yekgirtina hemû baskên Komele kirine û bo vê armancê jî hewl dane. Îlxanîzade wê civînê bi gaveke erênî dihesibîne û dibêje: "Hê civînên me negihane wî cihî ku ber bi prosesyek cidî bimeşin." Lê wek çavdêrên siyasî dibêjin, civîna herdu aliyan piştî perçebûnê gaveke erênî ye, eger nekevin pey komployên ne yekgirtinê.

Îlxanîzade herwiha diyar kir: "Em hêvî dikin siyaseta boykotkirinê ji holê rabe. Encamên van civînan di dema pêşiyê de derdikevin holê. Em ê gotûbêjên xwe bidomînin. Destpêkê em dixwazin peywendiyên me normal bin, paşî bo yekgirtina tev baskên Komele, hewldan bên destpêkirin."

Derbarê astengên pêşiya yekgirtina wan her du aliyên sereke yên Komele û çareserkirina pirgirêkên navbera wan du aliyan, Îlxanîzeda wiha axivî: "Me hê behsa pirsgirêkên hûr nekiriye û civîn neketine pêvajoyeke cidî, heta ku bê zanîn asteng çi ne. Lê pirsgirêka herî mezin çawaniya yekgirtinê ye, divê em li ser vêya biaxivin ku şêweyê kar û siyaseta me çawa dibe, ji ber ku di van du salên borî de hem em û hem wan jî xwe guhertiye. Lê giring ew e em niha li ser xalên hevbeş û peywendiyên normal tekezê bikin."

Herçiqas li gor gotina Îlxanîzade hê dema civîna dahatû ya navbera herdu aliyan nehatiye diyarkirin, lê dixwazin encama civîna dahatû ya xwe bi rêya daxuyaniyan bi fermî bo raya giştî û medyayan eşkere bikin. Herçiqas wan di wê civîna dawî de jî pêşniyara han kiribûn, lê şanda Komeleya Şoreşger a Zehmetêkêşên Kurdistana Îranê daxwaz kiribûn tu daxuyanî di vê derbarê de neyên eşkerekirin. (AK)

# Biryarên nû cotkarên kurd teslîmî birçîbûnê dikin

## Sûriye dixwaze 30 hezar donim zevî ji kurdan bistîne û Rojava û Başûrê Kurdistanê ji hev veqetîne

**Hewlêr (Rûdaw) -** Ji ber paşguhxistina navçeyên rojavayê Kurdistanê, bêtiriya kurdên Rojavayê Kurdistanê bo dabînkirina debara jiyana xwe, sê werzên salê di çandiniyê de kar dikin û li benda dema hilgirtina dexl dimînin. Lê dewleta Sûriyê bi rêya biryarek nû dixwaze zeviyên 381 cotkarên kurd ji wan bistîne. Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê dibêje, mebesta vê biryara nû ya dewleta Sûriyê domandina prosesa Erebkirin û ji hev veqetandina başûr û rojavayê Kurdistanê ye.

Roja 13'ê Nîsan a 2010'an, rêveberiya çandiniyê ya parêzgeha Hesekê biryara hejmar 2707 derxist ku tê de navê 381* cotkarên kurd heye: "Divê navê van cotkaran ji tomaran bên rakirin." Li gor biryarê, divê niha hemû karên van cotkaran li ser van zeviyan bên bi dawî anîn.

Berpirsê Ragihandina Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê, Nûrî Birîmo, bo Rûdawê ragihand ku li gor kopiya biryara ku wan bidest xistine û dane Rûdawê jî, ev 381 cotkarên kurd girêdayî 78 gundên navçeya Dêrikê ne.

Birîmo ron kir ku: "Ev girêbest gava ku reforma çandinî li navçeya Cizîrê pêk hat, dewletê milkdar avêtin û bi navê cotkaran girêbest di navbera wan û rêveberiya reforma çandiniyê de îmze kir û zeviyên wan bi navê zeviyên dewletê tapo kirin.."

Navbirî herwiha dibêje ku ew hewl didin vê biryarê rawestînin, ji ber 381 malbatên kurd ji çavkaniya jiyana wan, bêbeş dike. Civata Siyasî ya Kurd jî ku ji 9 partiyên kurdî li rojavayê Kurdistanê pêk tê, daxuyaniyek belav kir û ragihand ku biryara nû bi mebesta erebkirina navçeyê û destdanîna ser zeviyên cotkarên kurd hatiye derxistin.

Biryara 2707 zirarek mezin dighîne cotkarên kurd û nêzîka 30 hezar donim ku dike 3500 hektarên zeviyan, ji zeviyên herî baş ên çandiniyê ji kurdan distîne. Nûrî Birîmo da zanîn: "Rijîma Baas li Sûriyê bi mebesta erebkirina navçeyê û veqetandina parçeyên Kurdistanê, sala 1972'an dest bi cîbicîkirina projeya Kembera Erebî ya bi dirêjahiya sînorên navbera Sûriye û Tirkiyê kir, zeviyên kurdan yên girêdayî navçeya Dêrikê zeft kirin û dan ereban.Sûriyê dixwaze kembera erebî di navbera Rojavayê Kurdistanê û Başûrê Kurdistanê de cîbicîh bike û wan ji hev cuda bike."


جمهورية العربية السورية
وزارة الزراعة والإصلاح الزراعي
مديرية زراعة الحسكة

الرقم :
التاريخ : ٢٠١٠/٢/١٧

الى دائرة زراعة/

يطلب اليكم شطب اسماء الفلاحين من محاضر اجور المثل وعقود الاجار بالمناطق العقارية التابعة لكم في سجلاتكم والواردة اسمائهم في الجدول المرفق ربطاً وذلك لعدم حصولهم على الترخيص القانوني وفقاًلاحكام القانون/٤١/لعام٢٠٠٤ وتعديلاته وذلك استناداً لتعليمات الوزارة للاطلاع وتثبيت واقعة الالغاء في سجلاتكم

الحسكة في / /٢٠١٠

مدير الزراعة والإصلاح الزراعي بالحسكة
م. حسين البكور

**Kopiya nivîsa Wezareta Çandin û Çaksaziya Çandinî ya Sûriyê ya hejmar 2707 ku bi zimanê erebî li roja 13 Nîsan a 2010'an derketiye û daneyeke wê gihaye Rûdaw: Daxwaza jêbirina navê 381 cotkarên kurd li daireyên hikûmetê tê kirin.**

Birîmo herwiha daxuyand: "Civata partiyên siyasî ku Partî jî tê de endam e, biryar dane ku komîte bên dirustkirin û piştgiriya xelkê bikin ku li ber xwe bidin, ji erdên xwe dernekevin û nehêlin kemberek erebî ya nû li Sûriyê bê cîbicîhkirin."

Navbirî behsa amadekariyên El-Partî û hêzên kurd kir û got: "Heta niha civata siyasî deh civînên berfireh li navçeya Dêrikê saz kirine. Cotkar û gundiyan soz dane ji van erdan dernekevin. Me peywendî li gel hêzên opozîsyonê yên ereb li Sûriyê jî kir. Lê Partiya Pêşverû ya Demokrata Kurd li Sûriyê bi serokatiya Hemîdê Hecî Derwêş, PYD ya girêdayî PKK'ê û Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê (Yekîtî), ne amade bûn piştîvaniya hewldanên me bikin."

Di dawiyê jî, navbirî dakokî kir: "Em nahêlin Baas vê projeyê derbas bike. Berê jî dema ku xwestin ereban ji navçeya Şidadê bianiya û li deverên kurdan bicîh bikirana; endamên partî rê li traktoran girtin û nehêştin ew bên pêş. divê cotkar dest ji zeviyên xwe bernedin." (BM)

**Navên van 381 cotkarên kurd û cihên zeviyên wan di **rudaw.net** de bixwînin.*

Şandeya Başûr

# Mizgîniya Kurdistana azad dan miriyên li Bakur

## Kevnepêşmergeyên Başûr piştî 20 salan ji bo bîranîna hevalên xwe serdana gorên wan ên li Bakurê welêt kirin

**Bawer Çem - Silêmanê Alîxan**
Amed-Köln


(Wêne: Rûdaw)

**Şanda ji Başûr li Amedê peşmergeyên kurd li ser gora wan bi bîr anîn**

Ji Herêma Kurdistanê şandeyeke 15 kesî çûn serdana goristanên Pêşmergeyên ku li Bakûr jiyana xwe ji dest dane. Endamekî şandeyê got "Em hatine mizgîniya Kurdistana azad bidin miriyan." Di salên 1990-1993'an de li kampên Amed, Mûş û Mêrdînê nêzî hezar û 500 kesî jiyana xwe ji dest dabûn. Şandeya Kurdistanê çûn ser gorên şehîdên Kurdistanê û ji bo giyanê wan dua xwendin û tacegulên kesk, sor û zer danîn ser gorên cangoriyan.

Serokê şandeyê, Serbest Lezgîn derbarê serdanê de got "Min pêşniyar kir em biçin rewşa gorên wan şehîdan bibînin û nûjen bikin ji bo ku şûnwarên wan wenda nebin û kêfa kesûkarên wan jî bê." Wî herwiha diyar kir ku di gel wan de kesûkarên şehîdan jî hene "Rûniştvanên van bajaran, pêşwaziyeke germ li me kirin. Herwiha ji ber ku ev kar girêdayî şaredayî ye, me hengî di gel civatên şaredariyên van bajaran kir û wan alîkariya me kir û bi me re bûn."

Serbest Lezgîn jî li ser gora Pêşmergeyên li Goristana Deriyê Mêrdînê li Amedê behsa sala 1988'an kir: "Gelê Bakur li vir deriyên dil û malên xwe ji me re vekirin, nanê xwe bi me re parve kir. Em spasiya gelê xwe yê li Bakur dikin." Serbest Lezgîn bal kişand ku yên li Bakur û Başûrê Kurdistanê di oxira kurd û Kurdistanê de jiyana xwe ji dest dane: "Niha li ba hev radizin. Bila cihê wan bihûşt be, giyanên wan şad bin."

Derbarê rewşa gorên wan şehîdan, Serbest got "Goristanên kempên Mûş û Mêrdînê di nav xelkê de weke Goristana Pêşmergeyan tên naskirin." Serokê şandeyê herwiha got "Ez ne bawerim ku em ê wan goran veguhêzin Başûrê Kurdistanê, ji ber ku ew hemû ji aliyê mirovên xwe di nava gorên rêkûpêk de hatine veşartin, lê em ê wan nûjen bikin. Em ê di goristanan de deriyên taybet dirust bikin û tabloyekê bi nav û dîroka wan şehîdan danin. Em ê li vir hin kesan desnîşan bikin da alîkariya me bikin ku em plana xwe cîbicî bikin."

Endamê Şandeyê, Genaral Osman Qasim jî got "Şandeya me tenê PDK'yî bûn, lê em bi navê Kurdistanê hatin. Me ev pêngav avêt û em hêvîdarin ku êdî rê ji kesûkarên şehîdan re vebibe ku ew bikaribin serdana mezarên wan bikin." Rêvîng Hirorî jî ku endamekê din ê şandeyê bû got ew ji bo "Mizgîniya Kurdistana azad bidin miriyan" hatine.

Ehmed Denîz ji bo Rûdawê:

# "Heta diyalog çênebe pirs çareser nabe"

## Di hevpeyvînek li gel Rûdawê, Berpirsê Pêwendiyên Derve yê PKK şertên çareserkirina pirsa kurd diyar kirin

**Firat Kelehkî**


(Wêne: Diha)

**Berpirsê pêwendiyên dervê yê PKK'ê Ehmed Deniz**

**Qendîl (Rûdaw) –** Roja 27'ê Nîsanê Berpirsê Peywendiyên Derve yê PKK'ê Ehmed Denîz daxuyaniyek di derbarê hevpeyvînek Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Dr. Berhem Salih de dabû ku ew hevpeyvîn di Televizyona Haber Turk de hatibû weşandin. Denîz di daxuyaniya xwe de balê dikşîne ser axaftinên Dr. Berhem Salih û dibêje ku wî sivikayetî bi serkirdayetiya PKK'ê kiriye. Nivîsgeha taybet a Serok- wezîrê Herêma Kurdistnê jî di vê derbarê de daxuyaniyek weşand û ew tewnbariya berdevkê PKK red kir.

Denîz ragihand ku haya wan ji daxuyaniya Dr. Berhem tune û got: "Me berê xwe dabû kanala Haber Turk'ê dema hevpeyvîna rêzdar Dr. Berhem weşandin. Di wir de ji kek Berhem dipirsin û dibêjin berî çend rojan Amberîn Zaman hevpeyvînek li gel Murat Karayilan kiriye û ew jî dibêje dewletê nûnerekî xwe şandiye Îmraliyê. Ew jî wek bersiv dibêje 'texmîn nakim' û wiha derbas dibe 'Murat Karayilan derewan dike'. Lewra me pêwîst dît daxuyaniyek bê dan."

### "Haya me ji derewên çapemeniya tirk heye"

Denîz got ku ew dizanin ragihandina tirk carna derewan dikin, berevajî û wek xwe tiştan dinivîsîn lê dîsan jî xwestine rastiya vê meselê bizanin: "Lê me xwest daxuyaniyek bê dan û ger ne rast e, nûçeya Haber Turk'ê derew bê derxistin. Mebesta wan jî ew e ku nakokî bikeve navbera kurdan û li dijî hev rawestin. Daxuyaniya Kek Dr. Berhem erênî ye. Daxwaza me hemû kurd ji zimanê ku kurd pê lawaz bibin û pê biêşin birevin. Bila rexne bikin, di cihê xwe de ye, lê ger şêwazê dijmin dixwaze neyê bikaranîn baştir dibe. Mebesta me ew bû."

### "Artêşa Tirk amadekariya operasyonek berfireh dike"

Ehmed Denîz da zanîn ku niha li Dersîm, Amed, Bingol, Cudî, Gabar, milê Şemzînan û Hekarî operasyon hene û wiha dirêjî bi axavtina xwe da: "Ev ne wek yên berê ne, êrîşên jinavbirênê ne, hemû bi piştgiriya helîkopter û firokeyan tên kirin. Di heman demê de li ser navçeya sînorê Heftanîn, Zap û Ava Şîn herdem bombebaran û topbarankirin heye. Hikûmeta Tirkiyê ti wateya bêçalaktiya yekalî nehiştiye. Wek mînak, doh li Lîce qeza Amedê operasyonek berfireh dane destpêkirin. Herçiqas heval xwe didin alî ew bi ser wan de diçin, lewra hevalan jî kemîn daniye û di encamê de wek ew dibêjin efserek hatiye kuştin û leşkerek jî birîndar bûye.

### 'Bandora me li ser hemû hêzan heye'

Berê dema di pêvajoya bêçalaktiyê de şerek derbiketa, dihat îdîakirin ku grûpek ji biryara serkirdayetiya PKK'ê derketiye û li gor serê xwe kar dike yan cudabûn çêbûye. Lê Ehmed Denîz wan îdîayan red dike û dibêje bandora wan li ser hemû hêzan heye û didomîne: "Sedema van hemû şeran operasyon in. Hemû pêvajoyên din jî yekalî derbas bûn. Dewletê got em ê pirsa kurd çareser bikin lê her çû paş de gav avêtin. Nêzîka 1500 endamên BDP'ê, rêxistinên sivîl û 4000 zarok di girtîgehan de ne, bêyî ku di derbarê wan de tiştek jî bê kirin. Dawî jî gotin ev pîlana tesfîyekirina PKK'ê ye. Em dibêjin bi şer nabe û diyalog pêwist e. Ew jî dibên em mafên neteweyî qebûl nakin, ên takekesî qebûl dikin. Ma wiha pirs çareser dibe?" Denîz dûpat kir ku heta rûniştin û diyalog dest pê nekin pirs çareser nabin. ▶ 2/14

Li Parlamena Ewrûpa ji kurdan re hat gotin:

# Ji bo pirsgirêka Kerkûkê, pişta xwe bi Ewrûpa germ nekin

Roja 26'ê Nîsan'a 2010'an li Parlamena Ewrûpa behsa pirsgirêka Kerkûk û navçeyên bi nakok hat kirin. Di wê konferansê de çendîn kesayetiyên kurd, parlamentarên ewrûpî û siyasetvan amade bûn. Li wir kurdan daxwaza alîkariyê ji ewrûpiyan kir, rojnamevanekî Ewrûpî jî di bersivê da got: "Ji welatên Ewrûpayê re berjewendiyên wan ji we giringtir in."

**Mistefa Çiwartayî-Bruksel**



**Dîmenek ji konferansa Brukselê**

Profesor Dr. Kemal Mezher di derbarê dîroka Kerkûk û navçeyên bi nakok semînarek taybet pêşkêş kir. Wî herwiha behsa dîroka Îraqê û tawanên rijîma Seddam kir û got: "Rijîma Seddam hin tawan pêk anîne ku Naziyan jî wek wan ne kiribû." Profesor behsa turkmenan jî kir û got: "Derbarê pirsgirêkên wan, pêwîste hin nûnerên turkmenan tevî gelên ku li Îraq û Kurdistanê dijîn, bikevin diyalogê. Ev ji wê yekê baştire ku ew berê xwe bidin welatên cîran."

Endamê Polîtburoya Yekîtiyê Mela Bextiyar jî di derbarê prosesa erebkirinê de axivî û diyar kir ku baştire niha hejmar bipeyivin: "Biyavê (berfirehî) Başûrê Kurdistanê bi tevahî 86 hezar kilometrên ducarî ye ku dibe ji sedî 19.62 ji xaka Îraqê. Ji wê xakê bêtirî 36.684 kîlometrên ducarî ku dibe ji sedî 42.66 ji xaka herêma Kurdistanê ketine ber prosesên erebkirin û veguhestinê." Li dawiyê jî Mela Bextiyar berê xwe da Parlamena Ewrûpa û got: "Daxwaziya me ew e ku li gor karînên xwe, hûn nehêlin bêtir dem derbas bibe û hewil bidin ku ji bo cîbicîkirina madeya 140, hikûmeta Îraqê pêş de biçe."

Di konferansê de turkmen hem wek beşdar û hem wek mêvan amade bûbûn. Lê ji ber ku Serokê Partiya Gel a Turkmenî Irfan Cemîl amade nebû, li şûna wî Qeys Qeredaxî peyva wî pêşkêş kir û got: "Demek dirêj e gelên turkmen û kurd bêyî pirsgirêk bi hev re dijîn. Ew herdu jî rastî polîtîkaya erebkirinê hatine." Berpirsê Ragihandina Instituta Kurdî li Bruksel Heso Hurmî jî semînarek pêşkêş kir. Wî di navbera ragihandina fermî ya hikûmeta navendî, serbixwe û ragihandina Kurdistanê de behsa pirsgirêka Kerkûkê kir. Di konferansê de herwiha alîgirên Eniya Turkmenî jî hebûn ku wek mêvan hatibûn, carna radibûn ser piyan û raya xwe ya dijber nîşan didan.

Di nava amadebûyan de jinek bi navê Sûad Mîrza Beg hebû ku wê behsa pirsgirêka Êzdiyan kir û got: "Dibe ku vegerandina navçeyên Êzdiyan ser herêma Kurdistanê bibe sedema ku bêtiriya pirsgirêkên Êzdiyan çareser bibin."

Di derbarê navçeyên bi nakok de Serokê Instituta Kurdî ya Bruksel'ê Derwêş Ferho got ku "Kurdên ku li Kerkûk û navçeyên bi nakok dijîn, xweziya vegera ser herêma Kurdistanê dixwazin û pêwîste hurmeta wê xwesteka wan bê girtin." Derwêş Ferho behsa destêwerdana dewletên cîran kir û got ku ew astengiyan dirust dikin. Wî daxwaz ji ewrûpiyan kir ku "zû bikevin tevgerê û piştevaniya cîbicîkirina madeya 140 bikin da ku aşitiyek hertimî li wê navçeyê pêk bê."

Bi baweriya piraniya parlamenter û kesatiyên ewrûpî yên beşdarên konferansê, pirsgirêka Kerkûkê pirsgirêkek navxweyî ye, ji bo çareserkirina wê jî pêwîste li gor destûrê tevbigerin. Rojnamevanê Belçîkayê, Paul Vanden Baviere, semînarek pêşkêş kir û got: "Baştire hûn zêde pişta xwe bi Ewrûpa germ nekin. Yekîtiya Ewrûpa tenê berjewendiyên xwe diparêze. Pirsgirêkên me yên ji wê cûrê jî hene. Baştire hûn wek Îraqî bigihin çareseriyekê."

Endamê Parlamena Holanda Harry Van Bommel jî got: "Paşdeman û cîbicînekirina madeya 140 wê tesîrek negetîv li rûniştvanên wan navçeyan bike." Herwiha got: "Rêyên yasayî hene ku pêwîste bên meşandin û bendên yasayî bên cîbicî kirin."

Di dawiya semînar û gotûbêjan de, daxuyaniya konferansê hat xwendin ku çend rasparde (şîret) arasteyî hikûmeta Îraqê û Kurdistanê kiribûn.

Di hilbijartinên herêmî yên eyaleta Almanya NRW

# Kurd dîsa bêyî berendamên rasterast dikevin hilbijartinan

**Seyîdxan Kurij** Duisburg



**Sait Keleş**



**Çiler Fırtına**



**Rıza Kurç**

Di 9'ê Gulan a 2010'an de ji bo Parlamena Eyaleta Nordrhein Westfalenê (NRW) hilbijartin hene. Di lîsteya giştî ya partiya Keskan de berendamên kurd tunene, lê li çend hereman berendamên rasterast hene. Me li ser hilbijartinên NRW bi sê berendamên kurd ên partiya Keskan ve sohbet kir.

Yek ji wan Riza Kurc yê 27 salî ye ku xelkê Dêrsimê ye û endamê Partiya Keskan e. Ew li bajarê Duisburgê ji herema sêyan, berendamê rasterast e. Sait Keleş jî ji Çewligê ye û li Duisburgê ji herema duduyan e. Herwiha Çiler Fırtına ya 45 salî, ji Dersimê ye, 15 salan zêdetire endama Partiya Keskan e, hevseroka rêxistina partî li Porzê ye, endama berê ya meclîsa bajarê Kölnê ye. Li ser armanca berendambûnê Riza Kurc got "Hikumeta federal û hikumeta eyaleta NRW'ê piranî mafên sosyal ên heyî kêm kirin. Ji bo ku polîtîkaya hembera çînên jêr bê guherîn, divê Partiya Keskan di hilbijartinên 9'ê Gûlanê de encameke baş bigre. Tiştê din ku em pir giring dibinîn guherîna polîtîkaya perwerdê ye. Em dixwazin şansê perwerdebûnê yê her hemwelatî wekhev be." Derbarê nebûna berendamên kurd di lîsteya Partiya Keskan a NRW'ê de, Rıza Kurç got, "Ew kêmasiya me kurdan e. Di Partiya Keskan de bi taybetî li hemberî kurdan, ti astengî tune. Partiya Keskan ji bo civatekê pir dengî, pir rengî û pir çandî têdikoşe. Em naxwazin koçberan asimîle bikin, ango di nav civata Almanyayê de bihelînin."

Sait Keleş jî got, "Ez di navbera salên 2004'an û 2009'an de endamê meclîsa şaredariya Duisburgê bûm. Lê li Duisburgê heftê sal in Partiya Sosyal Demokrat - SPD'ê desthilatdar e. Ne mimkune em li vir rayên herî pir bigrin." Wî derbarê lîsteya Partiya Keskan de got, "Mixabin îsal ji bo parlamena NRW'ê berendamên kurd nînin. Di nav partiyê de gelek kurd ên ku bikaribin parlamenteriyê bikin hene. Lê ji bo ku bên hilbijartinê, wan baş xebat nekirine. Ji aliyê din di partiyê de li hember kurdan bendekî polîtîk jî heye. Berê di nav Partiya Keskan de qedr û qîmeta kurdan hebû, lê ew dem derbas bû. Niha di partiyê de tenê parastvanên derûdor mane. Pirsgirêka kurd wan pir alaqadar nake."

Li ser pirsa hebûna lobiya tirkan di nav Partiya Keskan de, Sait Keleş got, "Gava bê îspatkirin ku di nav Partiya Keskan de lobiyek tirk heye yan jî giraniya lobiya tirk li ser polîtîkaya partî heye, ezê ji Partiya Keskan îstîfa bikim. Lê bi giştî di nav Partiya Keskan de dijayetiya kurdan nîne."

Çiler Fırtına jî armanca berendambûna xwe weha vedibêje: "Ezê xebata xwe ya di warê nasandina peyam, mafên kulturî yên kurdên ku ji Tirkiye û hemû heremên Kurdistanê hatine Almanya û Ewrûpa, berdewam bikim. Pêwîste kurdên Ewrûpa, û bi taybetî ciwan, di tekoşîna siyasî de cih bigrin. Bi dengên ku ezê bigrim, ez dixwazim potensiyela kurdan li taxên ku ez lê namzet im, bidim nîşandan." Wê herwiha got, "Di lîsteya Keskan de yek Îranî û du tirk hene. Ez bûm berendam, lê ji ber ku min vekirî dijî rêxistinên nîjadperest – şovenîst û dewlet- perest ên ku ji Tirkiyê tên, helwest girt, endamên Partiya Keskan tirsan. Ji ber wê ez nehatim hilbijartin."

Çiler Fırtına ew jî eşkere kir ku di nav Partiya Keskan a NRW'ê de giraniya lobiya tirkan tune, lê lobiyeke fundemalîstên îslamî heye.

Berendamê Partiya Çepan Yasin Kut:

# Ezê li dijî cudaxwazî û nijadperestiyê têbikoşim!

## Di hilbijartinên herêmî yên eyaleta NRW de, Yasin Kut di partiya "Die Linke" de yek ji çar berendamên kurd e

**Ludenscheid (Rûdaw)** - Kurd êdî di nav dezgeh û partiyên alman de cîhê xwe digrin, dixwazin siyasetê bikin û di pêşeroja Ewrûpayê de bibin xwedî gotin. Yek ji wan kurdên ku dixwaze bibe berdevkek ji yê kurdan û di siyaseta Almanyayê de bibe xwedî ray û gotin, Yasin Kut e. Yasin Kut namzedê Parlamentoya Eyaleta Nordrhein Westfalen e û ew ji Partiya Çep (die Linke) wek namzet hatiye destnişankirin. Hilbijartin wê di 9'ê Gulanê 2010'an de bên lidarxistin û Yasîn Kut ji bo "Landtagswahlkreis 123, Märkischer Kreis III" berendam e. Yasîn Kut ji Rûdaw re behsa namzetiya xwe û kar û xebatên xwe kir.


(Wêne: Rûdaw)

Berendamê partiya Die Linke Yasin Kut

**Birêz Kut, gelo li welatek biyanî û di holek biyanî de zehmetiyên siyaset û siyasetkirinê çawa ne?**

Bi rastî zehmet e mirov li welatekî biyanî siyasetê bike û bibe nûnerê gelê xwe. Hem barekî giran e û hem jî berbirsiyariyek mezin e. Jê re bêhnek dirêj divê. Li welatekî ku mirov zimanê wî, çanda wî, siyaseta wî nizanibe û bixwaze temsîldariyê tê de bike, wextek dûrûdirêj û kedek mezin divê. Siyasî, aborî, sosyal, dibistan, ango em ji her alî ve zehmetkêş in.

Wek mînak, di têkiliyên malbatî de me destpêkek bi zehmet derbas kir heta me sîstema vir qebûl kir. Wek kurdekî siyasetmedar, ez xwe di wê astê de dibînim ku karibim pirsgirêkên civakê bînim zimên û min bawer kir ku ezê bi piştgiriya gelê xwe van zehmetiyan li paş xwe bihêlim.

**Wek kurdekî penaber namzetiya meclîsa eyaletê his û hestek çawa dide te, ev fikir ji ku hat?**

Em wek penaber ji welatê xwe hatin vir, di şertên zehmet de hatin vir. Min li vir ne wek penaberekî, lê wek kurdekî ku pêşeroja zarokên xwe li vir sazkar bikim nêzîkî meselê bûm. Min bawer kir her tiştên ku li vî welatî diqewimin bi me ve girêdayî ne û wek kurdekî min ji nêzîk ve ew pêşketin şopandin. Min di 1995'an de di nav Partiya Keskan de cîh girt. Dihat gotin ku pirsgirêkên biyaniyan hene, lê gavên berbiçav nedihatin avêtin. Piştre bi alîkariya hevalên xwe beşdarî civînên Partiya Çep bûm. Piştî civîna duyemîn ez bûm alîkarê wekîlê serokê Partiya Çep a Ludenscheid ê. Niha jî ez dikevim hilbijartinên meclîsa eyaleta NRW.

**Armanca we di van hilbijartinan de çi ye?**

Em li welatekî biyanî dijîn û ji ber biyanîbûna me pirsgirêkên me jî zêde ne. Pirsgirêka zimên, pirsgirêka hevragirtinê, perwerdeya zarokan û jiyana penaberiyê bandorek mezin li me dikin û pirsgirêkên zehmet in. Wateya namzetiya me kurdan ev e: "Em hene, em dijîn û em namzet in". Biyanî êdî li vî welatî ne mêvan in, niştecîh in. Divê ji bo xwe û nifşê pêşerojê di hola siyasetê de cihê xwe bigrin. Divê kurd mafên xwe di çarçova zagonên wî welatî de biparêzin û rûpelek nû vekin.

Wek biyaniyekî namzetiya min ji bo min destketinek mezin e. Wek biyaniyekî ez pirsgirêkên biyaniyan ji nêzîk ve nas dikim. Ez wek kedkarekî pirsgirêkên karkiran zanim û rêzê ji keda wan re digrim. Wek bavekî kurd dixwazim bibim alîkarê malbatên ku dixwazin pêşerojekê ji zarokên xwe re biafirînin.

**Armancên we yên şexsî?**

Dixwazim di warê kultur, kar, dibistan û mafê mirovan de bibim xwedî gotin û wan biparêzim. Herweha dixwazim wî derî vekim ku karibim li dijî şer rawestim û daxwaza mafên demokratîk ê gelê xwe bînim zimên. Bi kurtî, dixwazim kurd û mafê kurdan bidim naskirin.

**Gelek parti hene, gelo çima Partiya Çep?**

Li eyaleta NRW de 4 namzetên kurd hene û her çar jî namzetên Partiya Çep in. Ji ber go mafê biyaniya diparaze û di destûra partiyê de rê li peşiya mirovan vedike. Ez bawer dikim ku em ê bigihin konaxa zanistiye û demokrasiye. Ez hevidarim ku kurd di wan hilbijartinan de bigihin serkeftinê.

**Hevpeyvîn: Medya Deniz**

*Yasin Kut kurdekî ji Mêrdînê ye, 48 salî ye, zewicî ye, 3 zarokên wî hene. Li Ludenscheidê wek karker di beşa metalê de dixebite û ji 1997 vir de endamê sendîka "IG Metall" e. Yasin Kut ji 2007'an vir de endamê Partiya Çep e û di damezirandina şaxê partiyê li bajarê Ludenscheidê cîh girtiye û di meha Kanûn a 2008'an de wek endamê berpirsiyar hatiye hilbijartin. Di Tebax a 2009'an de ji bo meclîsa bajêr hatiye hilbijartin.*

# Swêd daxwaza penaberiya 4 hezar Îraqiyan red dike

**Stockholm (Rûdaw)** - Swêd yasayên mafê penaberiyê û mafê lihevcivandina malbatên penaberan, dijwartir dike.

Welatên Yekîtiya Ewrûpa berdewam in li ser dijwarkirina polîtîkaya koçberî û penaberiyê û yasayên xwe ji hev nêzîk dikin. Swêd yek ji wan welatên Ewrûpî bû ku heta sala 2000'an jî siyasetke mirovanetir dimeşand. Lê bi taybet piştî sala 2006'an ku Hevalbendiya Rastgiran desthilat bidest girtine, daxwaza hejmareyek zêde ji penaxwazan li Swêdê hatiye red kirin û çendîn kes jî hatine neçarkirin ku vegerin welatên xwe, bi taybet welatiyên Herêma Kurdistanê û Îraqê. Niha mafê penaberiya 4 hezar Îraqiyan hatiye red kirin.

Hin kurd û Îraqiyên ku daxwaza wan hatiye red kirin, ji wan hatiye xwestin ku e vegerin welatê xwe. Penaxwezên kurd diyar kirin, "Polîs ji me re gotiye ya baş ew e hûn bi xweşiya xwe vegerin Kurdistan û Îraqê, ji ber ku ger hûn 10 salên din jî xwe veşêrin, divê her vegerin."

Îdareya Koçberan li Swêdê ji 15'ê Nîsan a 2010'an û şûn de bi yasayek nû kar dike û pêwîste kesên ku piştî serê sala 2010'an mafê manê li Swêdê standine, bo anîna hevjîn û zarokên xwe ku li welatê xwe bicîh mane, karê wan berdewam hebe ku bikarin xwe û malbatên xwe pê xwedî bikin. Ji aliyeke din jî tevelvizyona Swêdê ragihand ku îdara penaberan li Swêdê biryar standiye ku doseya wan 1200 Îraqiyên ku biryara derkirina wan ji Swêdê hatiye dayîn, dubare binirxîne.

Herwiha Federasyona Penaberên Îraqî roja 8'ê Nîsan a 2010'an li gel nûnerên heft partiyên Swêdê civiya û nameyek li gel îmzaya 1500 swêdiyan radestî wan kir da ku lihevhatina nehênî ya navbera Swêd û Îraqê hilweşînin û penaberên Îraqî neşînin welatê wan. Dîsan daxwaz kirine penaberên kurd ên ku di kampan de hatine binçavkirin, azad bikin û ew 1400 kurd û Îraqiyên ku ji sala 2007'an ve mafê manê jê hatiye standin, dubare ji wan re bê dayîn.

# "Rûdaw bi nirxekî erzan min li Kurdistanê digerîne"

**Berlîn (Rûdaw)** - Rojnameya Rûdaw hêdî hêdî xwe digihîne hejmareke mezintir ji xwendevanan. Yek ji wan kesên ku ji destpêkê ve çapa Ewrûpayê ya Rûdawê dixwîne, Cemal Osman e. Dema şufêrê taksiyê yê kurd li rawestgeha Hermannstrasse li Berlîna paytexta Almanyayê li bendî zibûnan radiweste, ew de-ma xwe yan bi xwendina Rûdaw yan jî çapa kurdî ya Le Monde Diplomatique re derbas dike. Berî ku ew Rûdaw nas bike û bixwîne, kurdê 54-salî rojnameyeke almanî dixwend. Lê êdî Rûdaw ji taksiya wî dernakeve. Cemal Osman, ku ev 30 salên wî ne li Almanyayê dijî, bi kêfxweşiyeke mezin behsa dike bê çawa ew êdî bi zimanê kurdî ser rewşa kurdan li herçar perçeyên Kurdistanê agahdar dibe. Ew dikene û dibêje: "Ez bi taksiya xwe zibûnan li Berlînê digerînim, lê Rû-daw bi nirxekî pir erzan min li seranserî Kurdistanê digerîne." Osman, ku bi eslê xwe ji herêma Efrînê li Rojavayê Kurdistana ye, şeş mehan salê li Almanyayê dijî û şeş mehên din li we-lêt derbas dike. Berî ku ew di destpêka Gulanê de bifire welêt, peyama wî ji Rû-daw re ev bû: "Tenê ragi- handineke bi hêz dikare me bike miletek ku her yek ji me ha ji yê din hebe. Hêvîdar im Rûdaw baş bê belavkirin û xwendin. Hûn xeba- teke pîroz dikin." Em jî dibêjin: Rûdaw bi xwendevanên xwe mezin e. (SHB)



(Wêne: Rûdaw)

Cemal Osman di behnvedanên xwe de dema xwe bi Rûdawê dibuhurîne

# “Homoseksuelên kurd bindestê bindestan in”

## LGBT’yên kurd di destpêka vê mehê de bi kovara xwe “hevjîn” ya bi kurdî-tirkî jî dibêjin: merheba!

**Bawer Çem** Amed

Homoseksuelên kurd ên li Amedê ku di nava LGBT’ê de cih digrin, komeke bi navê “Hevjîn” ava kirin. Homoseksuel Murad diyar kir ku ew hem ji ber tercîha xwe zayendî û hem jî ji ber kurdbûna xwe bindestiyê dikişînin.

Lez, Gey, Bîseksuel û Transeksuelên (LGBT) kurd li Amedê ji xwe re komeke rêxistinî ava kirin. LGBT’iyên kurd navê Hevjîn li koma xwe kirin û wê di destpêka Gulanê de bi kovara Hevjîn derkevin pêşiya hevalbendên xwe. Yek ji homoseksuelan Murad, ji rojnameya me Rûdawê re axivî. Murad, diyar kir ku komaka wan ji 7 endamên aktîf pêk tê, lê bi dehan LGBT’iyên kurd re di nava têkiliyê de ne û wiha behsa pirsgirêkên xwe kir:

“Di nava koma me de neteweperestên kurd hene, lîberal hene, BDP’î hene, sosyalîst hene. Bes aliyê me yê hevpar ev e; em li nasname, têkoşîn û mafên kurd û kurdewariyê xwedî derdikevin. Em xwe weke kurd dibînin û doza kurdan jî weke dozeke mafdar dibînin, xwe jî perçeyeke vê dozê dibînin. Lê mixabin di nava civaka me de, em gelek pirsgirêk dijîn. Dema em diçin ba lez, gey, homoseksuel û bîseksuelên tirk, em ji ber nasnameya xwe biçûk têne dîtin, zû bi zû me qebûl nakin. Civaka kurd jî civakeke bindest e, lê em di nava vê civaka bindest de, bindestên bindestan in. Çimkî me biçûk dixin. Em dema kargehek dixebitin, pê dihesin ku em homoseksuel in, me ji kar derdixin. Yên dizanin ji xwe tu caran kar nadin me.” Murad, destnîşan kir ku ji ber pirsgirêka îstîhdamê gelek transeksuel neçar dimînin ku fuhuşê bikin û wiha berdewam kir:



(Wêne: Rûdaw)

**Komek LGBT’yên kurd li pêş galeriyek li Amedê**

### Dest bi kîjan karî dikin tên avêtin

“Gelek kesên di nava me de zanîngeh qedandine, yên lîsansa bilind dikin hene, yên ji wan pêşketîtir jî hene, lê ji ber nasnameya xwe ya zayendî ne di saziyên dewletê de ne jî di nava yên civakê de nikarin kar bibînin. Ji ber vê yekê hin kes neçar dimînin ku bedena xwe bifiroşin, ji wan re tu riyeke din namîne. Li vir bang li kesên bihîstiyar û bi taybetî jî saziyên sivîl, şaredariyan dikim, ji van kesên dilsoz, pêşketî û bi qabîliyet re bibin alîkar, deriyên karê xwe ji wan re vekin, wan îstîhdam bikin.”

### “Sebahat Tuncel pir dibe alîkar”

Homoseksuelê kurd Murad, destnîşan kir ku ew tu caran nikare bi xoşewîsteke tirk re bijî, tercîha wî xoşewîsteke kurd e û fikrên xwe wiha vegot: “Serê pêşîn xoşewîstê min ê tirk jî çêbû, lê me nikarî em bi hev bikin. Di demên wisa de neçar dimînim ku mafdariya doza kurdan pê bidim qebûlkirin, aciz dibim. Êdî naxwazim streseke wisa bijîm. Jixwe di jiyanê de jî tim bi kurdî diaxivim. Dema ez bi kurdî diaxivim û yek bi tirkî bersiv dide, pir diçe zora min. Ez tu caran êdî nikarim bi homoseksuelekî tirk re bijîm, ger hebe, divê muheqeq kurd be.” Murad, bi bîr xist ku li Tirkiyeyê Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) yekemîn partî ye ku mafên LGBT’iyan xistiye bernameya xwe û aşkera kir ku Parlamentera BDP’ê ya Stenbolê Sebahat Tuncel pir bi pirsgirêkên wan re eleqedar dibe. Murad, da zanîn ku Tuncel tim li ba wan e û wê Tuncel di 30’ê Nîsanê de li Amedê li ser pirsgirêkên LGBT’ê tevli panelek bibe.


(Wêne: Rûdaw)

**Murad li ser bircên Sûrên Amedê**

### “Polîs me sûcdar dibînin”

Yek ji transeksuelan Oyku jî, destnîşan kir ku ew jî ji ber tercîha xwe ya zayendî dem bi dem rastê tacîz û destdirêjiyê tên û polîsên tirk jî wan weke kesên sûcdar dibîne. Oyku, da zanîn ku ew bi pankartên xwe yên Hevjînê îsal tevli xwepêşanadan 8’ê Adarê Roja Jinên Cîhanê û Newrozê bûne û wiha dawî li axaftina xwe anî: “Li qadê hin kesan em êşandin, tiştên nexweş ji me re gotin. Jinên kurd bi çavekî matmayî li me nihêrtin, heyirî mabûn. Lê gelek kesên ku piştgirî dan me jî hebûn. Hem nerazîbûn û hem jî piştgirî çêbû. Di pêşerojê de em bawer dikin ku em ê bikaribin derdê xwe ji hev re bibêjin û empatiyek ava bikin.”




**Berge kovara hevjîn ku wê di van rojan de bê çapkirin**

## Sîrên jinan



**Taman Şakir**

Sîran bixwin, jinên we bi aliyê we ve nayên. Ev vedîtin û lêkolîna hejmareke nivîskar û rewşenbîran e ku piştî temeneke dirêj ji vekolîn û fikirîna li ser civaka me û pirsgirêkên wê, gihiştin wê encamê ku sîr ne bi tenê di warê tendirustî de, lê di warê civakî û zayindeyî de jî gelek sûdên sîran hene. Bi taybet ji bo kesên ku temen mezin in û êdî tiştek ji wan nayê û naxwazin li pêş xanimên xwe rûreş derkevin.

Dibe ku sedem ne bi tenê temen be, lê mirina evîna di hundirê malê û odeya razanê de be. Ger pirsgirêk temen û bê hêzî be, vaye zanistê Viagra çê kiriye ku miriyan jî har dike. Bi xêra van tabletan hinek berpirs û sermayedarên pîr jinên xwe parastine û sipasiya zanista hevdem dikin ku ev pirsgirêk nebûye sedema bêparbûna wan ji pere û xweşiyên jiyanê. Ji ber ku pere bi tenê kêfxweşiyê peyde nake û wê ew kes neçar bibûna hinek rêyên din bişopînin û kilîtên kaseyên wan biketa destên hin kesên din.

Dibe ku tişta ev rêzdar behs dikin, ne tenê pêkenokek be. Lê hinek rastî jî tê de hebe, ji ber ku di vê civakê de pir zehmet e mirov behsa hemû tiştên jiyana xwe bike û neçar dibe bi awayê pêkenokan wan vebêje. Ev yek rehetiyekê dide ruhê mirovan.

Di hejmara borî ya Rûdaw’ê de, di rûpela civakî de min raporek li ser poşmaniya ji jiyana hevjîniyê xwend ku bêhtiriya wan bi sedema destêwerdana dayik û bavên bûk û zavayan, derdikeve holê. Lê ger em hevberkirinekê bikin, em ê bibînin ku rêjeya poşmaniyê di nav civaka me de ji ya Ewrûpiyan pir kêmtir e. Li Holanda û Almanya rêje gihaye ji sedî 80, angu divê ew xweziyan bi jiyana me bixwazin. Lê gelo xêzanên me ewqasî kêfxweş in? Yan civak dest ji qirika wan bernade û ew newêrin li gel xwe jî rastgo bin? Ji ber ku gotina rastiyê peywendiyên di navbera du binemalan têk dide û du xêzanên xizm jî dike neyar, yanî derew kirin baştir e.

Li vir pirsek ji dê û bavan tê kirin; gelo çima ew bi vî awayî tev digerin? Li şûna ku hewl bidin jiyaneke rehet ji zarokên xwe re peyda bikin, ew jiyana wan dikin dojeh û dibin sedema poşmanî, xwekuştin û xweşewitandina bûk û keçên xwe. Ev berevajî erk û peyama dayiktî û bavîtiyê ye. Ciwanê ku digihe temenê jinanînê, rola wî weke mêr çi ye di destnîşankirina çarenûsa xwe û xanima xwe de? Yan pirsgirêk aborî ye û pirsgirêkên civakî jî li pey xwe tine? Hinek ciwan hene, di bêrîka wan de Dînarek jî tune, lê dixwazin jinê bînin. Dê û bavê wan jî neçar dibin jinê ji wan re bînin, hem bo dabînkirina jiyana hevjîniyê ji kurê xwe re û hem jî bo alîkariya malê.

Lê ev rewş dom nake û kole “Ebid” dixwaze azad bibe, vêca heta kîjan cihî serkeftinê bidestve tîne, ev mijareke din e. Lê ger kes serbixwe be, berpirsiyarê jiyana xwe be û çavê wî li destê dayik û bavên wî nebe, wê neçar nebe sîran bixwe da ku jina wî neyê cem wî. Lê gelo ger jinan sîr xwarin, wê çi bibe?



Dîmenek ji fîlmê “Kwêstanî Qendîl” (Zozanên Qendîl)

# “Kwêstanî Qendîl” çîroka hevjiyana 4 gelan vedibêje

## Di fîlmê ku wê li hemû bajarên Başûrê Kurdistanê bê nîşandan, 120 lîstikvanên kurd, tirk, ereb, fars tê de dilîzin

**Raman Xerîb** Silêmanî

Derhênerê Fîlmê sînemayî yê “Kwêstanî Qendîl” Teha Kerîmî got ku biryare fîlmê wan li bajarê Silêmanî û tevahiya bajar û bajarokên Herêma Kurdistanê bê nîşandayîn. Fîlmê navborî çîrokên jiyan û xema hevbeş û lihevkirina çar neteweyên kurd, tirk, ereb û fars vedibeje û di demografiyek wek zozanên Qendîlê de hatiye çêkirin. Derhêner wan çîrokan bi zimanê sînemayê nîşan dide.

Teha Kerîmî ji Rûdawê re got ku fîlm behsa ked, êş, xem û lihevkirinên gelên Rojhilata Navîn dike, bi taybetî çar netewên kurd, tirk, ereb û fars. Çîroka fîlm ji zimanê çar lîstikvanên sereke û çendîn lîstikvanên din ên weke Kemal Celal Qadir, Aware Hisên, Ebdulrehman Mihemed, Elî Mecîdzade û 120 lîstikvanên wan çar netewan tê behs kirin.

Derhênerê fîlm got: “Fîlm behsa derbasbûyî û peywendiyên niha yên her çar neteweyên cîranên hev dike ku di demografiyeke wek Qendîlê digihin hev û hewl dide çîrokeke sînemayî behs bike.”

Di Fîlmê “Kwêstanî Qendîl” de sê hunermendên navdar ên kurd rolê sereke dilîzin: Mamosteyê şanoyê Dr. Qutbedîn Sadiqî, Eynedîn Merîwanî û hunermend Comerd ji Bakurê Kurdistanê. Yek ji rolên din ji aliyê mêvanê berhemê, hunermendê şanoger yê Başûrê Kurdistanê, Kameran Reuf û nîgarkêşa Ereb, Lemya Hisên tê nîşandan.






Bi ekîbek profesyonel filmê “Kwêstanî Qendîl” hat kişandin

Fîlmê “Kwêstanî Qendîl” wê ji rojên 14’ê Gulan a 2010’an û şûnde li Salona Rewşenbîrî ya bajarê Silêmaniyê bê nîşandayîn. Herwiha tevî nîşandana wê fîlmê, sê fîlmên berê yên derhêner û senaryoya fîlmê “Kwêstanî Qendîl” jî weke yekemîn senaryoya çapkirî ya kurdî ji aliyê Weşanxaneya Renc li Silêmaniyê wê bê belavkirin.

Fîlmê “Kwêstanî Qendîl” berhema Rêvebiriya Hunerê ya Sînemaya Silêmaniyê ye.



(Wêne: Rûdaw)

Dîmenek ji sûka Tirbespiyê li Rojavayê Kurdistanê

# Şêrînahiya bajarê Tirbêspiyê

Li Kurdistanê feqîrî û belengazî rê nade ku zarokên kurdan bi têra dilê xwe şêrînahî bixwin. Heke tu libek şêrînahiyeke wisa bidî zarokekî, çawa ku te ‘cinet’ dabûye. Lewma xeyala gelek dêbavan e ku bikaribin bi parçeyek şêrînahiyeke wisa ve li deriyê malê bixin û dilê zarokên xwe xweş bikin. Me ev wêne li Tirbêspiya Rojavayê Kurdistanê kişand; li wir şêrînahî mifteya ‘cinet’ê ya zarokan e. Hûn jî para zarokên xwe jibîr nekin!



Dîmenek ji kişandina fîlmê “Lets Change It”

# “Lets Change It” diçe Cannes

**Cannes (Rûdaw) –** Fîlmê kurdî Lets Change It (Em Biguherin) hatiye berbijarkirin bo beşdarîkirina di festîvala Canes a fîlman de, ku navdartirîn festîvala cîhanê ye û her sal li bajarê Fransa, Cannes tê lidarxistin.

Dema fîlm 14 xuleke û çîroka wî behsa berhemanîna fîlmekî ji aliyê du kesan ve dike, ku şevekê hinek kes êrîşî wan dikin û kamera û çantê wan dibin, piştre ji aliyê êrîşkaran ve dest bi berhemanîna fîlm tê kirin.

Lets Change It berhema şîrketa Glenaa Films e û ji aliyê derhêner û nivîskarê kurd Awat Osman Elî, ku berê jî çend fîlmên serkeftî berhem anîne, hatiye derhênan.

Derbarê vî fîlmî derhêner, Awat Osman dibêje: “Fîlm ji pirsên civakî, tawan û drama pêk tê û bi awayê fîlmên dokumentarî hatiye berhemanîn, ji ber beşeke fîlm dokumentarî ye û beşek jî xeyalî ye.”

# “Kurdistan cihê herî xweş bûye ku heta niha ez çûmê”



Leyla Fruher û hunermend Êbî

**Hewlêr (Rûdaw) –** Hunermendê navdar yê fars Êbî, piştî vegera xwe ya Amerîka, di hevpeyvînekê de li gel kanala PMC, spasiya xelkê Kurdistanê kir ku bi şêweyekî herî baş pêşwaziya wan kirin û wiha axivî: “Gelê kurd gelek baş in, bi rastî ew germî û pêşwaziya min li Kurdistanê dît, min li ti ciheke din ê cîhanê nedît. Kurdistan cihê herî xweş bûye ku heta niha ez çûmê.”

Êbî û Leyla Fruher, du hunermendên navdar ên fars, di konsera Hotela Xanzad de bi kincên kurdî çûn ser dikê. Hunermendê kurd Cemşîd ku bi wan re hatibû Kurdistanê, ji Rûdawê re got ji ber ku di dema konsera yekem de kincên wan ne amade bûn, wan bi cilûbergên din konser pêşkêş kirin. Di şeva konsera duyem de li ser kincên kurdî yên Leyla Fruher gelek hêmayên Ola Zerdeştî dihatin xuyakirin.

# Pirtûkên Casimê Celîl li Stenbolê têne çapkirin

Cara yekem bijareyek çar cildî ji berhemên Casimê Celîlê Osê bi tîpên latînî tên weşandin

**Salihê Kevirbirî** Viyana

Helbest û destanên rewşenbîr û nivîskarê kurd Casimê Celîlê Osê (1908-1998) ku li Erîvana Ermenîstanê bi ermenkî û kurdî çap bûne, yekem car li Tirkiyeyê bi formasyon û sazkariyeke nûjen, bi alfabeya latînî têne çapkirin.

Serokê Enstîtuya Kurdzaniyê ya li Viyanayê, Prof. Dr. Celîlê Celîl li ser van xebatên bavê xwe diyar kir ku wî ji tevahiya berhemên bavê xwe, bijareyek saz kiriye û ew ê wan wekî çar cild bide weşandin. Celîlê Celîl li ser girîngiya vê xebatê wiha got: "Ev kar demeke dirêj, li ser hişê min bû. Piştî wefata bavê min, gava arşîva wî bi tevahî gihîşte ber destê min, bi hûrbînî min li ser berhemên wî xebat kir. Ji bilî helbest, destan û qelîbotkan, nivîsarên wî yên rojnamegerî, edebiyatzanî û rexnegiriyê jî pir bala min kişandin.


Casimê Celîl

Armanca min ew bû ku ev xebat li Bakurê welêt û Tirkiyeyê jî di nava gelê me de bêne xwendin."

Celîlê Celîl dibêje ku ew dixwaze 4 cild bi hev re li Stenbolê çap bike ku wê her cildek li dora 300 rûpelî be. Celîl her wiha bi bîr dixe ku ew dixwaze bi vê xebata hêja ya bavê xwe, barekî giran li ser stûyê xwe rake.

Bingehdar û sazkarê weşangeriya kurdî li Yekîtiya Sovyetê, nexasim li Ermenîstanê Casimê Celîl Osê, di navbera salên 1932-1938'an û 1972-1982'yan de Berpirsiyariya Beşê Kurdî di Weşanxaneya Dewletê de kiriye. Wî di xebata xwe ya 16 salan de, kiriye ku gelek berhem û kitêbên kurdî li seranserê Ermenîstanê ronahiyê bibînin. Casimê Celîl ji bilî karê weşangeriyê, wekî bingehdarê Radyoya Ermenîstanê Beşê Kurdî jî, di navbera salên 1955-1964'an de bênavber 9 salan kar kiriye ku 4 sal jê serok bûye.

Li gorî agahdariyên Celîlê Celîl, wê helbest û destanên Casimê Celîlê Osê, ji bijareyên van berhemên wî yên binavkirî ku di navbera salên 1954-1989'an de hatine weşandin pêk werin:

Elegez Ermenkî, 1954, Kirdakan Sîravêpêr (Destanên Kurdan ên Evîndariyê) 1955, Mayrênî Axbiyur (Kaniya Dê), Ermenkî 1957, Rojên Min, 1960, Îm Ocaxe (Ocaxa Min), 1966, Kilamên Çiya, 1970, Oda Kurda, Kurdî, 1975, Kurdê Bengî, 1980, Zozan, 1982 Kofiya Diya Min, 1984, Bijare, 1989.


Bergê pirtûkên Casimê Celîl

Şayanê gotinê ye ku ji van berheman bi tenê "Zozan" li Stockholmê, bi alfabeya latînî çap bûye.

# "Xwendekar divê xwe di nav mijarên 'biyanî' de nexapînin!"

Serdagul têza xwe li ser rola jinê di çîvanokên kurdî de amade dike

**Evdile Koçer** Stenbol

Bajarê Stenbolê di xeyala gelek xwendekarên kurd de cihekî taybet digire ku bikaribin li wir zanîngehê bixwînin. Serdegul a ciwan jî yek ji wan e ku vê xeyala xwe pêk aniye û niha li Stenbolê di Zanîngeha Bilkentê de beşa sehne û dîtbariyê dixwîne.

Serdegul niha haziriyê dike ku di zanîngehê de teza xwe li ser 'Di çîvanokên kurdî yên devkî de, rola jina kurd' amade bike. Wê bi zanahî li ser kurdan mijareke wisa bijartiye. Sedemên vê yekê jî Sedegul ji me re wiha rave dike, "Belkî jî rihê min û yê malbata min yê kurdewar ez vekişandim ser rêyeke wisa. Ez dizanim gelek xwendekarên kurd ji bo teza xwe li ser civaka xwe mijaran nabijêrin, lê ev yek nîşan dide ku hêjî nasnameya kurd dibin zextê de ye."

Ew lê zêde dike ku di hilbijartina vê mijara xwe ya li ser çîvanokên kurdî, gelek tiştan hîn dibe û rihê xwe pê dewlemend dike, "Ez dixwazim bi vî awayî xwe di nav folklora kurdî de perwerde bikim, li ser civaka xwe bêtir tiştan bizanim. Bi vê mijarê re bêtir min rola jinan, nasnameya wan û gelek nakokiyên din ên di nava civaka kurd de nas kirin.


Serdagul

## Kurd di hêla pirtûkxane û arşîvê de, gelekî qels in

Xwendekar Serdegul destnîşan dike ku çend hevalên wê yên di zanîngehê de ew li ser fikra bijartina mijareke wisa de gerim kirine, "Lê ew jî niha mereq dikin ka ez ê tezeke çawa amade bikim, ka divê mijarê de çavkaniyên çawa hene. Ya rastî çavkanî gelek hindik in. Ji xwe kurd di hêla pirtûkxane û arşîvê de gelekî qels in, giringiyê nadin tiştên wisa giring, kurd hêjî rojane dijîn. Di gelek mijarên xweser ên wisa de, mirov kêm çavkaniyan peyda dike. Ez bawer dikim lewma gelek xwendekar jî di van mijarên wisa de naxwazin ku xwe biwestînin û van mijaran hilnabêjêrin."

Çavdêriyên xwe yên ewil ên li ser "di çîvanokên kurdî de jin" jî behs dike ku di folklora kurdî de bêtir hukmê mêrantiyê heye, "Sembola dayîkê ya di folklora kurdî de gelekî bala min kişand. Qedr û qîmeta jina kurd di van çîrokan de xuya dike, lê dîsa jî fîgûra mêran bêtir li pêş çav e."

## Hevalên me nasnameya xwe ya kurdîtiyê vedişêrin

Serdegul diyar dike ku Zanîngeha Bilkentê cihê faşîstan e û nikarin xwe zêde têde bilivînin, "Em nikarin di derbarê kurdan de çalakiyekê organîze bikin; rektor bi sed bahaneyan ve rê nade, gelek hevalên me nasnameya xwe ya kurdîtiyê vedişêrin; lewma newêrin yan jî nikarin tezên xwe li ser civaka kurd jî amade bikin."

Serdegul bi taybetî bang li xwendekarên kurd dike ku divê tezên xwe, doktorayên xwe li ser civaka xwe amade bikin, "Êdî divê ev xwendekar xwe di nav mijarên 'biyanî' de nexapînin. Divê carekê jî li civaka xwe, çand û hunera xwe binêrin."

Yek ji damezrênerên Galatasaray:

# Kurd Celal Îbrahîm li Îraqê şehîd ket



Nivîskara Tirk Sumeyra Saglam Saydan, di pirtûka xwe "Kan ve Murekkep – Xwîn û Hibir" de balkêşiyek mezin kir û yek ji damezrênerên klûba tîma fûtbolê ya Galatasarayê bi xwendekaran da naskirin: Kurd Celal Îbrahîm!

Kurd Celal Îbrahîm, çaremîn damezrênerê klûba tîma fûtbolê ya Galatasaray e. Klûba Galatasaray di sala 1905'an de hatiye damezirandin û îro yek ji navdartirîn klûbên Tirkiyê ye. Sumeyra Saglam Saydan di pirtûkê de radigihîne ku Kurd Celal Îbrahîm cara pêşîn di 1906'an de wek fûtbolgerê tîma Galatasarayê derdikeve pêşberî tîma îngilîz. Celal Îbrahîm ê Kurd ji 1906'an heta sala 1914'an wek fûtbolgerê tîma Galatasaray lîstiye, di sala 1911'an de ew û tîma Fenerbahçe hatine pêşberî hev û Celal Îbrahîm ê Kurd di vê pêşbirkê de 4 gol avêtine Fenerbahçeyê.

Balkêş e ku di 1914-15'an de şerê yekemîn ê cîhanê dest pê dike û Celal Îbrahîm ê Kurd dev ji xwendina xwe û lîstina fûtbolê berdide, di lîsteya çûna şer de navê xwe di rêza yekem de dinivîse û diçe Îraqê di eniya şer de tê kuştin. Sumeyra Saglam Saydan di pirtûka xwe de bi qehremanî behsa Kurd Celal Îbrahîm dike û dibêje: "Ew yekem qehreman bû ku berî herkesî navê xwe di lîsteya şer de nivîsand û di cepheya Îraqê de şehîd ket." (BD)

Rojnameger û Nivîskar Emerîkê Serdar:

# Riya Teze ewledê min e, ez ewledê Riya Teze me!

## Emerîkê Serdar di sala 1962'yan de dikeve Riya Teze û heta 2006'an bênavber 46 salan kar dike

Rojnameger û Nivîskarê kurd ê eyan Emerîkê Serdar, di sala 1935'an de ji dayik bûye. Li gundê Sîpanê ya dorhêla Elegezê hatiye dinyayê. Pêşiyê wan jê re "Pampa Kurdan" digotin. Ev çend sal in navê gund guhertine û kirine Sîpan. 170-180 sal berê kal-bavên wî, ji dorhêla Qersê hatine Ermenîstanê. Ew ji eşîra 'Saniyan' e.

Serdar, piştî kutakirina 'Mekteba Elegezê' di sala 1954'an de li 'Fakulteya Zimên û Dîrokê ya Enstîtuya Ermenîstanê-Beşê Pedagoji- yê' de hatiye qebûlkirin. Di sala 1959'an de xwendina xwe diqedîne. Sê salan li gundê Elegezê, dersdarî kiriye. Ew dersdarê Zi-man û Edebiyata Kurdî û Ermenî bûye. Serdar, paşê dikeve nava xebata Radyoya Erîvanê Para Kurdî. Di dawiya sala 1959'an de dest bi vî karî dike, heta sala 1962'yan, wekî bêjer kar dike. Dîsa di sala 1962'yan de dikeve nava xebata Rojnameya Riya Teze û heta sala 2006'an bênavber 46 salan vî karî dimeşîne.

Emerîkê Serdar ji Erîvana Ermenîstanê pirsên me bersivandin…



Emerîkê Serdar li Riya Teze di dema xebatê de, 1977 Erîvan

**Ezbenî rewşa tendirustiya te çawa ye? Rojên teçawa derbas dibin?**

Hema bêje temamiya rojê di mal de me. Çavên min xerab dibînin. Lingê min jî diêşin. Zehf kêm ji mal derdikevim. Guhdariya radyoyê dikim. Keça min Nurê ji min re pirtûkan dixwîne.

**Gelo civat li te diqeside an na? Dost, heval û hogirên te yên berê têne serdana te?**

Bawer bike na! Ez diçim cem wan. Heftê carekê bi qasî saetekê du saetan diçim cem hevalan. Lê gelek caran ji derveyî welat telefonê min dikin, li halê min dipirsin. Ji Ukraynayê, ji Rusya û Ewropayê pirsa min dikin.

**Mamê Emerîk ev çend sal in te dev ji rojnamê berdaye?**

Ev bûn sê sal. Rewşa rojnamê ne baş e. Sê çar mehan carekê jî dernakeve. Serkariya rojnameyê baş karê xwe nake û rewş xerab e. Hejmarên derdikevin jî, naçe nava gel.

**80 sal in ku rojnameya Riya Teze heye. Nêzîkî 50 sal in ku keda te di nav xebata rojnamê de heye. Bi rastî jî gava behsa Riya Teze bê kirin, navê cenabê te di nava sê-çar kesan de tê hildanê. Keda te gelek mezin e. Gelo tu bêriya xebata li nav rojnamê dikî an na?**

Salih can tiştê ez bêjim, dibe ku ji aqilan der be! Gelek caran ez di xewna xwe de dibînim ku ez li rojnamê kar dikim, dixwînim, dinivîsim. Ev xewna min a sereke bûye. 46 salan bênavber min li rojnamê kar kir. Riya Teze ewledê min e, ez ewledê Riya Teze me! Rojname ketiye dilê min û rûhê min, lê heyf ku niha rojname ne li cihê ku heq dike ye. Ev tişt gelek li min çetin tê, ez gelek li ber xwe dikevim.

**Mamoste gelo tê bîra te gava nivîsa te ya ewil di rojnamê de derket. Kîjan sal bû, nivîs li ser çi bû? Piştî wê nivîsê hest û ramanên çawa li te peyda bûn?**

Li ser vê pirsê keneke biteqil dike, paşê berdewam dike- Salihê bira spas bo vê pirsê. Helbet baş tê bîra min. Sala 1955, meha sibatê bû. Min helbestek nivîsî bû. Li ser edlahiyê ango aştiyê bû. Min dixwend, lê min ji çavên xwe bawer nedikir ku navê min di rojnamê de hatiye nivîsandin. Min li kuçe û kolanan, li her derê nivîsa xwe nîşanî hevalan dida û digot va ye nivîsa min di Riya Teze de derketiye.

**Ji wê demê heta niha hejmara nivîsar-makale-roportajên te yên di rojnamê de derketî gelek in ne wisa?**

Erê lê çawa? Rastî ji birayê xwe re bêjim, hema ji hezarî zêdetir nivîsên min ên li ser edebiyata kurdî çap bûne… Di sala 1966'an de, ilimdar û zanyarê îngilîs bi navê Thomas Boyce li ser Edebiyata Kurdên Sovyetê de pirtûkek çap dike. Tê de dinivîse ku Emerîkê Serdar di nav Edebiyata kurdên Sovyetê de mirovê pêşin e ku bi rexnekirina edebiyatê ve mijûl e.

**Bêguman Emerîkê Serdar di nava edebiyata kurdên Sovyetê de navekî sereke ye û şayanê rûmetdayîn û xelatkirinan e.**




Li ser piyan: Rizganê Cango, Mirazê Cemal, Grîşayê Memê, Salihê Kevirbirî
Rûniştî: Emerîkê Serdar - 2002 Erîvan

**Her wekî tê zanîn te bixwe çend xelat jî wergirtine. Yek ji wan xelatan, te çendek berê wergirt. Gelo dikarî hinek behsa wê xelatê bikî?**

Belê serçavan! Navenda Bîyografî ya Navneteweyî (International Biography Center) ku li Cambridge'a Îngilîstanê karê xwe dimeşîne, bi navê "Profosyonelê Cîhanê yê Mezin-2009" ez xelat kirim...

**Xelat kete destê te?**

Belê çawa? Ji min re şandin. Vê gavê ew xelat li mala min, li ber destê min e… Berê jî, di sala 1986'an de ji hêla Hikûmeta Ermenistanê ya li Yekîtiya Sovyetê ez hatime rûmetkirin.

**Ezbenî wekî tê zanîn cenabê te xwediyê gelek berheman e jî...**

Rast e! Heta niha 7 kitêbên min derketine. 5 ji wan bi kurdî ne. 2 heb ji wan li rûsî hatine wergerandin. Li hêla din min bi qasî 10 kitêban ji rûsî û ermenkî wergerandine kurdî.

**Gelo çi ye sedem ku rojname heta niha weşana xwe berdewam dike. Em baş dizanin ku piştî hilweşîna Sovyetê, di nava şert û mercên gelek dijwar de, te serpereştiya Riya Tezeyê kiriye. Gelo ev eşq û evîna mezin ji ku tê?**

Meqseda te piştî salên 90'î ye. Min ji sala 1991'ê heta 2006'an berpirsiyariya rojnamê kiriye. Gotinekî me kurdan heye. Dibêjin; "min bi neynûkên destan kir!" Bi rastî jî min bi neynûkên tiliya xwe rojname xweyî kir û parast. Hikûmet nedibû xweyî, ez diketim gundan. Gund bi gund digeriyam û min karê rojnamê dimeşand. Te got eşq û evîn. Mamoste hebûn ku qirûş bi qirûş pere ji şagirtên xwe berhev dikirin, dianîn didan me ku rojname nesekine û berdewam bike. Li hêla din neteweperestên ermeniyan û cehşên êzîdiyan hebûn li dijî min derdiketin. Sedem jî ev bû. Tu jî dizanî, rojname heta sala 2000'î bi alfabeya kîrîlî derdiket. Min biryar girt ku bi tîpê latînî çap bikim. Lewre dijminatiya min gelek hate kirin.

**Ezbenî fikir û ramanên te li ser 113. Rojnamegeriya Kurdî û 80 saliya Riya Teze çi ne?**

Bi tenê ez dibêjim şikir ji Xwedê re ku 113 sal berê bi saya rojnameya Kurdistan, dinya bi me hesiya ku em kurd xwediyê rojnameyekê ne. Her wiha dibêjim rehma Xwedê li Mîthed Mîqdat Bedirxan be, cihê wî bihuşt be. Her wiha kovarên bi navê Hawar û Ronahî jî şanaziya edebiyata me kurdan e. Zehf razî me ku kurd xwediyên wan kovar û rojnameyan bûne. Ew stêrkên geş in di asîmanên rojnamegeriya me de.

Ez bêm ser Riya Teze. Rastî mala Xwedê, heta sala 2006'an jî rojname karê xwe bi serfirazî kir. Heta wê salê jî Riya Teze neynika tevahiya kurdên Sovyetê bû. Piştî min dev ji rojnamê berda, kesên li pey min, karên rojnameyê baş nameşînin. Ji ber ku kadroyên me yên sereke neman. Derketin derveyî Ermenistanê. Berê kesên wekî Prof. Celîlê Celîl, Babayê Keleş û Eskerê Boyik hebûn, dinivîsandin. Gotinekî me kurmancan heye, dibêje; "dasa mêra, maye ji kundê dêra!"

**Emerîkê Serdar careke din bihata dinyayê, cara ewil dixwest çi bike?**

Ez careke din bihatama dinyayê, minê dîsa bixwesta karê rojnamegerî û nivîskariyê bikira. Li hêla din, ne tenê li nav gundên Ermenistanê, ezê li seranserê gundên Kurdistanê bigeriyama. Ev daxwaz, baristana dilê min e.

**Ezbenî pirsa min a dawiyê ev e; tiştê di dilê te de maye û heta niha te nekiriye çi ye? Tiştek heye ku tu dibêjî, "xwezî min ew jî bikira çi dibû bila bibûya..."**

Min dixwest heta roja mirinê min di rojnamê de kar bikira û di nava xebatê de bimama.

**Mamoste Emerîkê Serdar siheta te xweş. Mala te ava be ezbenî...**

Avatir birê min, zehf razî me…

**Hevpeyvîn: Salihê Kevirbirî**

## Çapemeniya cîhanê

JYLLANDS-POSTEN

### Welatên Euroyê bi windabûna baweriyê rûbirî ne

**Danimarka** - Li başurê Ewrûpayê li gor qanûn, rê û rêbazan kabûsek bû rastiyek. Vîrûsa Deryaya Spî bi awayekî lez li beşên din yê parzemîn belav dibe. Krîza deynê Yunanîstanê ya ku dikare bê kontrol kirin, veguherî krîza pêbaweriya Euro û saziyên ku ji bo dirava Ewrûpa hatiye avakirin. Dibe ku dawiya vê pir trajîk be. Welatên Euro yên ku pêwiste alîkarî bidin, divê neyê ji bîrkirin ku ew jî di nava deynan de avjeniyê dikin. Lê li hember raya giştî bi lîstikên gotin û daxuyanî dan ku çikas ji aliyê polîtîk ve di nava neçariyê de ne. Welatên Euroyê bi salan bi çavên kor polîtîkayên başurê Ewrûpa ya darayî bi awayekî bêqeyd û merc temaşe kirin û di krîterên ku ji aliyê peymana Maastrichtê hatiye destnişankirin de jî ti kirdariya siyasi nehatiye kirin, ew krîter hatin binpêkirin

RZECZPOSPOLITA

### Ûkrayna serwêriya xwe difroşe

**Polonya** - Ûkrayna bi lezek çar gav xwe bi Rûsya'ê ve girê dide. Serokê nû Viktor Yanukoviç ev demek dirêj e ku wek alîgirê Rûsyayê tê nasandin. Lê belê nayê fahm kirin ku çima wisa bi lez serxwebûna welatê xwe teng dike? Ji bo çi peymana ku destûr dide Rûsyayê ku heta dawiya vê sedsalê li grava Krimê bimîne, îmze kir? Ne ji bo gaza xwezayî ye? Ger wisa be, Ûkrayna perçeyek ji serxwebûna xwe winda kir. Ev jî tê wê wateyê ku windakirina serweriyê ji bo serê mirovekî salê 90 Dolar e. Wisa erzan! Ev senaryoya negatîf tê wê wateyê ku Ewrûpa hêdî hêdî wê têkeve bin baskê Rûsyayê.

LE MONDE

### Pêçeya jinan bû sedema ceza

**Paris** - Li Nantes jinek ji ber sedema ku bi pêçeyê seyare ajotiye, rastî sizayê hat. Di 23'ê Nîsanê de Wezîrê Karê Hundir Brice Hortefeux ji Wezîrê Koçê Eric Besson xwest ku mêrê wê jinê ji hevwelatiyê derxîne. Lê ji bo çi? Ji ber ku jinên wî zilamî ji bo xwedîkirina zarokên xwe alîkarî ji dewletê distînin. Lê belê ev tişt rast be jî, ev nayê vê wateyê ku hevwelatiya wî bê betalkirin. Eger ku birêz wezîr Hortefeux tevgera xwe wisa bidomîne, wî çaxî divê ji wî bê xwestin ku dev ji karê wezîrtiyê berde.

Li gor îdiayên çapemeniya tirk:

# ASALA, Tirkiye bi hilweşînê tehdîd kir!

**Köln (Rûdaw)** - Di 10'ê Cotmeha 2009'an de li bajarê Swîsre Zûrîhê, li zanîngeha paytextê di navbêra Tirkiye û Ermenîstanê de protokolek hat mohrkirin. Li gorî protokola ku wek "protokola normalkirina têkîliyên navbêra herdu weletan" dihat binavkirin, piştî ku di parlemena herdu welatan de bihata qebûlkirin wê dest bi avêtina gavan bihata kirin. Ango herdu welatan bi awayekî beranberî wê hewil bidana ku têkiliyên navbêra xwe baştir bikin. Lê belê avêtina gavan li aliyekî bimîne, di ser îmzekirina vê protokolê re 10 meh derbasbûn, hîn jî li herdu welatan di vê mijarê de ti gav nehatine avêtin. Bi taybetî Tirkiye wek hincet qebûlkirina pêşniyazqanûna tevkujiya ermeniyan a li DYA'yê û desthilatiya ermeniyan a li ser Karabaxê ku tê îdîakirin xaka Azerbaycanê ye, nîşan da.



Serokwezîrê Tirkiyê Erdogan û Serokdewlêtê Ermenistanê Sarkîsyan

Tirkiye ji aliyê din ve fikaran dike ku eger ew nêzî Ermenîstanê bibe, wê nerazîbûna Azerbaycanê li hemberî wê bilind bibe. Ji ber ku Azerbaycan beriya niha gef li Tirkiyê xwaribû ku eger ew tawîzan bidin Ermenîstanê, ew ê gazê nema bi bihayê erzan bifroşin Tirkiyê. Lewma di daxuyaniyên de xala Karabaxê jî ji aliyê Tirkiyê ve tim û tim hat bilêvkirin. Her çend rayedarên ermenî, bi taybetî Serokdewletê Ermenîstanê Serj Sarkîsyan, bi daxuyaniyên erênî yên wek "eger Tirkiye protokolan di parlemenê de qebûl bike, ew ê jî di vî warî de gavan bavêjin" bide jî, Tirkiye zêde bi germahî nêzîkî qebûlkirina prtokolan nebû.

Di hevdîtina Ewlekariya Nukleyer a ku di 12 – 13'ê Nîsanê li paytexta Amerîka Washingtonê hat lidarxistin de, Serokwezîrê Tirkiye Recep Tayyip Erdoğan û Serokdewletê Ermenîstanê Serj Sarkîsyan hatin cem hev. Erdoğan ji Sarkîsyan re diyar kir ku ji ber biryarên DYA û Swêdê girtine, atmosfer ne amade ye û got, eger protokol niha bê parlamena tirk ew ê red bikin. Serokdewletê Ermenîstanê Sarkîsyan jî ji Tirkiyê xwest ku çareseriya pirsgirêka bi Karabax a Jor ve girê nede. Piştî hevdîtina li Washîngtonê Wezîrê Karê Derve yê Ermenîstanê Edvard Nalbandyan, daxuyaniyek da û got ku ew wek rêveberiya Erîvanê wê di mijara Karabax a Jor de bi Tirkiyê re hevdîtinan çênekin. Nabaldyan da xuyakirin ku wan pêvajoya protokolan jî cemidandiye û got, eger Enqere ji bo pêkanîna protokolan amade be hingî em jî dikarin gavan bavêjin.

Ji alîyê din ve hin malperên tirkan îdîa kirin ku rêxîstîna çekdar a ermenîyan ASALA, belavokek belav kiriye. Li gorî wan nûçeyan, ASALA di belavoka ku bi minasebeta 35. salroja damezirandina xwe û salroja 95. a tevkujiya ermenîyan de belav kiriye, gotiye wê Tirkiye di dawîya dawî de hilweşe.

Ji bo qedexeya pêçê

# Belçîka gava yekem avêt



Ewrûpî rûyên lixumandî weke metirsiyek ewlekariyê dinirxînin

**Köln (Rûdaw)** - Civata Nûnerên Belçîka bi tevahiya dengan biryara qedexekirina pêçeya jinan (burka) pejirand û tê çaverêkirin ku biryar di çend mehên dahatû de bikeve warê cîbicîkirinê, ji ber ku nayê çaverê kirin ku ev biryar ji aliyê Civata Pîrên Belçîkayê ve bê red kirin.

Tevî ku hejmara jinên misilmanê yên bi pêçe li Ewrûpa kêm e jî, lê tê îdikirin ku li van dawiyan hejmara wan ber bi bilindbûnê ve diçe. Ev biryara Belçîka jî tundtirîn helweste ku dewleteke endama Yekîtiya Ewrûpa "li dijî misilmana" pêk tîne. Li hin welatên din ên weke Fransa jî ku mezintirîn rêjeya misilmanan lê dijên, ev demek dirêj e ku qedexekirina pêçê tê nîqaş kirin.

Rapirsiyên vê dawiyê li Fransa diyar dikin ku ji sedî 70 yê rûniştvanên wî welatî dixwazin ku qedexekirina pêçê tenê li cihên giştî be, lê ne bi şêweyeke tevahî be. Ev tişt jî lihevnekirina navbera siyasetvan û raya giştî ya Ewrûpa û rêberên misilmanan û rêxistinên mafên mirovan jî dide xuyakirin, bi taybet ku hin berpirsên ewrûpayî amaje didin wê yekê ku ev pêngava yekemîn e û ew ê di dahatû de hewl bidi ku hîcab, pêkanîna nivêja bi cemaet li ser cadeyên bajarên mezin û gelek tiştên din jî bên qedexe kirin.

Li Parlamena Ukrayna

# Bi boksan çûn hev



Guftûgoyên parlamenteran bi lêdanî bi encam bûn

Hefteya borî parlamenterên ukraynî li hundirê parlamenê bi hev ketin û li hev xistin. Sedema pevçûnê girêdana rêkeftina nû ya Ukrayna li gel Rûsya bû, ku li gor wê Rûsya dikare heta 25 salên din hêzên xwe yên deryayî li benderên Ukrayna, li nîvgirava Krim bihêle.

Li gor ajansa nûçeyan AP, piştî vê bûyerê û biryara parlmenê, bi hezaran daniştvanên ukraynî yên alîgirên hêzên opozîsyonê daketin ser kolanên bajarê paytexta welêz Kievê û nerazîbûna xwe pêşan dan.

Rûsya ku ji bo welatên rojavayê Ewrûpa çavkaniya serekî ya gaza xwezayî ye, gaza wê di Ukrayna re derbas dibe. Li gor vê peymanê nû di navbera Rûsya û Ukrayna, wê Rûsya gazê bi nirxek erzan (ji sedî 30 ji buhayê bazara cîhanê erzantir) bide Ukrayna.

Pisporê siyaseta navçeyê Lincoln Mitchell, di gotarek li ser şerê li hundirê Parlamena Ukrayna, di rojnameya Boston Globe ya amerîkî de dibêje: "Wêneyên pevçûna bi mistan ya parlamenterên Ukrayna, li navçeyê nîşanên guherînên girîng in, ji ber ev wêne îspat dikin ku parlamenter hest dikin her biryarek ku parlamen pesend bike, bandorê li ser siyaset û dahatûya Ukrayna dike."

# Heyeta BDP şî Amerîka

**Anqara (Rûdaw) -** Hemserekanê Partîya Aştî û Demokrasî (BDP) ra Selahedîn Demirtaş û her di hemserekê Partîya Cematê Demokratîkî (DTP) ya ke gêrîyaya Ehmed Turk û Emîne Ayna roja diyê gulane sey yew heyete şîy Dewletanê Yewbîyayan yê Amerîka (DYA). Heyeta BDP do şeş rojî Amerîka de bimano.

Na reya verên a ke yew heyeta sîyasetkaranê kurdanê Kurdîstanê Bakurî Amerîka zîyaret kena. Çarçewaya nê zîyaretî de, do buroyê BDP yê Waşîngtonî bêro akerdene. Heyeta sîyasetkaran badê akerdişî do Enstîtuyê Broonkinsî de beşdarê panelêkê bi sernameyê "Persa Kurdan" bibo, dima zî San Firansîsko de beşdarê kombîyayîşêkê qelebalixî yê şarî bibo. Endamê heyete her di kombîyayîşan de zî do derheqê bîyayîşanê sîyasî yê Tirkîya de tetkîkan bikerî. Bi munasebetê akerdişê buroyê DTP yê Waşîngtonî heyeta BDP do yew resepsîyon bido qismêk parlamenter û sîyasetkaranê DYA û derheqê persa kurdan de sîyasetkaranê DYA reyde dayîş û girewtişan bikero.

Çîyo tewr muhîm zî, heyeta BDP do muawinê wezîrê karê teberî yê DYA zîyaret bikero. Nê zîyaretî de do meseleya kurdan munaqeşe bibo û heyeta DTP do DYA ra teleb bikero ke çarekerdişê meseleya kurdan de Amerîka hîna aktîf bixebitîyo. Hewna, mesaj bêro dayene ke operasyonê eskerî yê muhtemelî do meseleya kurdan hîna vêşî bialoznê, DYA ke wazena mintiqa de îstîqrar estbo, coka operasyonê winasî ne lehê dewletanê mintiqa de yê ne zî lehê menfeatanê DYA de yê. Heyeta BDP roja heştê gulane do Amerîka ra agêro.

Par wexto ke serekê DYA Barck Obamayî Tirkîya zîyaret kerdbi, roja şeşê nîsana 2009î de Anqara de hemserekanê Partîya Cematê Demokratîkî (DTP) ra Ehmed Turk zîyaret kerdbi. Na reya verêne bîye ke serekêkê DYA lîderêkê sîyasî yê kurdanê Kurdîstanê Bakurî zîyaret kerdbi. Ehmed Turk û Barck Obamayî meseleya kurdan ser o qisey kerdbi.



Heyeta sîyasetkaranê kurdanê Kurdîstanê Bakurî şî Amerîka

# Hîrê kitabê hîkayeyanê tutan vejîyay

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Enstîtuya Kurdkî ya Dîyarbekirî bi nameyê "Qehremanîya Vîta Zingure", "Biza Kole Asnawî kena" û "Luya Rîsîyaye û Ap Elî" bi kirmanckî (zazakî) hîrê kitabê tutan ke Mehmûd Nêşiteyî nuş-tê û resmê înan zî hetê resam Bariş Seyîdvanî ra virazîyayê, weşanay.

Her kitab de yew hîkaya esta û nameyê hîkaye ro kitabî ronîyayo. Hîkayeya "Qehremanîya Vîta Zingure" hûmara 30. û hîkaya "Biza Kole Asnawî kena" zî hûmara 32. yê kovara Vateyî de vejîyaybîy. Nê her di hîkayeyî hetê Malmîsanijî ra redakte bîyê. Hîkaya "Luya Rîsîyaye û Ap Elî" zî hetê J. Îhsan Esparî ra redakte bîya.




Biza Kole Asnawî Kena, 12 rîpelî




Luya Rîsîyaye Û Ap Elî, 12 rîpelî




Qehremanîya Vîta Zingure, 16 rîpelî

## Faturaya Volkanê Îzlanda 2.5 mîlyar euro ya

**Bruksel (Rûdaw) -** Komîsyonê Yewîyîya Ewropa beyan kerd ke sektorê hewagêrîya Ewropa ser o faturaya zerarê volkanê Îzlanda dorê di mîlyar û nêm euroyî de ya.

Muawinê serekê berpirsîyar yê neqlîyatî yê Komîsyonê Yewîyîya Ewropa Siim Kalasî va, volkanê koyê Eyyafyallayokull ke Îzlanda de roja 14ê nîsane de kewt fealîyet û hetanî roja 21ê nîsane, se hezar ra vêşêr seferê firokeyan û seyahetê des mîlyonî merdiman amey betal kerdene. No mudet de sektorê he-wagêrîye mîlyar û nêm ra hetanî di mîlyar nêm euro zerar kerd. Siim Kalasî waşt, bê ke reqabetê mîyanê dewletanê endaman bêro îhlalkerdene, destûr bêro dayene ke zerarê sektorê hewagêrîye tezmîn bibo û tayê alternatîfê sey bi faîzêko kêmî kredî bêro dayene û qismêkê deynê sektorê hewagêrîye bêro texîr kerdene pêşkêşê nê sektorî bibê.

Semedê ke hewrê wele yê volkanê Îzlanda asmênê Ewropa ser o vîla bibi, tam hewteyêk firokeyî nêşay Ewropa de bifirrê. Coka heme şîrketanê hewagêrîye yê Ewropa beyanat da ke înan di mîlyarî euro ra vêşêr zerar kerdo.



Volkanê Îzlanda di mîlyar û nêm euro zerar da sektorê hewagêrîya Ewropa ro

## Partîyanê Kurdîstanê Başûrî îtîfaq kerd

**Hewlêr (Rûdaw) -** Partîyê Kurdîstanê Başûrî seba ke parlamentoyê Bexdadî de pîya hereket bikerê, programêk ser o pêkerd û Îtîfaqê Fraksîyonanê Kurdîstanî rona.

Lîsteya Îttîfaqê Kurdîstanî, Hereketê Goranî, Yekgirtûyê Îslamîyê Kurdîstanî û Komela Îslamîya Kurdîstanî weçînayîşê pêroyî yê Îraqî de ke roja hewtê adara 2010î de cîyacîya dekewtîbîy weçînayîş û hemîne têpîze de 58 parlamenterî vetbîy. Partîyê kurdan seba ke parlamentoyê Îraqî de pîya hereket bikerê û bi hawayêko pêt kurdan temsîl bikerê, programêk ser o pêamey.

Badê ke netîceyê weçînayîşan bellî bi, heme partîyê kurdan binê serekîya Mesud Barzanî de çend rey kom bîy. Axir roja 28ê nîsane de resay netîceyêkê musbetî û vera partîyanê ereban de îtîfaq kerd. Nameyê îttîfaqê kurdanê Kurdîstanê Başûrî "Îtîfaqê Fraksîyonanê Kurdîstanî" yo. Bi no qayde heme hêzê Kurdîstanê Başûrî do parlamentoyê Îraqî de pîya hereket bikerê.



Heme partîyê Başûrî parlamentoyê Îraqî de do pîya têwbigêrî

# *Kêfxweşî, hezin û kîn*



**AHMET ALTAN***

Li vê hola ku berî 33 salan xwîn lê hatibû rijandin, 1'ê Gulanê kêfxweşîyek bêhempa hebû. Al, slogan "karker û rêncber", rewşenbîr, çep, rêxistin, partî, jin û zarok li hola Taksîmê kom bûbûn.

Çeperên ku berî 33 salan ji alî kesên çekdar ve hatibûn danîn, bi girseyî hatin rûxandin. Bi rabûna qedexeyan re me dît ku aştî jî dikeve nav jiyana me. Helbet, di rabûna qedexeyan de, wek daxwazên mirovan, rola girtina endamên çeteya dewleta kûr jî tê de mezin e. Di 1'ê Gulanê de eşkere bû ku gava pişta çeteyên dewletê bên şikandin, wê ev civak li jiyan û kêfxweşiya xwe vegere. Ji ber tiştê ku jiyan li me kiriye kabûs, ev dewleta kûr a rezîl e.

Êrîşe ser qereqola Dêrsimê, feryad û hewara dayikên zarokên kuştî di ekranên televizyonan de li rûyê me dikevin, êşa wan xwe berdide nav û hinavên me. Û bi kîn hûn "çima ev zarok hatin kuştin" dipirsin?

Wateya vê êrîşa PKK'ê çi ye? Fêda wê li kê dibe? PKK a ku dibêje min biryara agirbesê girtiye, çima êrîşî qereqolê dike û eskeran dikuje? Bi vê êrîşî dixwaze çi bi dest xe? Ma bi kuştina çar zarokên gundî yên ku cilên eskerî li xwe kirine wê kurd pir bextewar bibin? Ma wê derkevin firehiyê, wê dawî li derdan bê? Hem hûnê bêjin bela operasyonên eskerî nebin, hem jî hûnê bi êrîşên wilo rê ji operasyonên mezin re vekin, ev çawa fikar e? Rêveberên PKK'ê berî du salan li Qendîlê ji min re digotin "êdî em bi şerê çekdarî nagihên derekê", ew axaftin di vîdeoyên wan de arşîvkirî ne. Madem şerê çekdarî ne çareserî ye, çima hûn êrîşî qereqolê dikin? Madem şerê çekdarî ne çareserî ye, çima hûn xwedî li şerê çekdarî derdikevin, li Samsûnê polîsan, li Dêrsimê eskeran dikujin? Hûn dixwazin operasyon rawestin, yan xurtir bibin? We got ku hûn serxwebûnê naxwazin, naxwe hûn dixwazin bi van çalakiyên çekdarî çi bikin?

Hê berî hefteyekê Şamîl Tayyar û Adem Yavûz Arslan "ji bo rêlibergirtina guhertina makezagonê senaryoyek heye ku PKK li Samsûn û Dêrsimê çalakîyan bike" nivîsandibûn. Sedem çi bû ku piştî van nivîsan hûn li gora vê senaryoyê tevgeriyan?

Ma karê we kêfxweşkirina CHP, MHP, Dadgera Bilind, Ergenekon û astengkirina guhertinên demokratîk e?

Baş e, lê artêş çi dike?

Rojnamevanan jî zanîbû ku wê li Dêrsimê çalakî bê kirin, çima artêşê helwestek negirt? Çima 12 saetan alîkarî ji bo eskeran neçû? Bi ser ewqas îstîxbarat, agahî balkêşiya rojnameyan, ger artêşek nikaribe eskerên xwe biparêze, ew artêş bi kêrî çi tê? Yan naxwaze rê li ber senaryoyan bigre?

Li vî welatî hesabên desthilatdariya li ser xwîna mirovan kêm nabin.

Lê wê ev gel, tirk û kurd rojekê dawî li van lîstikan bînin.

Êdî bes e, we ewqas zarokên kurd û tirkan kuştin.

Êdî bes e, we ev xak kiriye goristana zarokan.

Êdî bes li ser xwîna mirovan bijîn.

**Ahmet Altan Rêvebirê Giştî yê rojnameya tirkî Taraf e*

**Wergera ji tirkî: Brîndar Deştî**

# *Sêrtê û komkujiya zarokan*

**MEDYA DENİZ**



Bi rojan e kiryarên li bajarê Sêrtê di çapemeniyê de tê nîqaşkirin. Tika dikim ku kesek li hemberî vê bûyerê rola ecêbmayînê nelîze. Çawa ku ev bûyer li her derê dinyayê pêk tên, li Tirkiyê jî rû didin. Divê em ji bîr nekin ku îro Tirkiye di rêza yekem a tecawiza zarokan de serî dikşîne.

Li Sêrtê du salan li ser hev 100 kesî tecawizî 7 şagirtên dibistana sereke kirine. Ne mimkin e ku li bajarekî piçûk mîna Sêrtê di nava du salan de kesî ev bûyer nebihîstibe. Dezgehên jinan vê bêdengiyê wek "piştgiriya zilaman" û "namûsa civakê" bi nav dike. Li vir gava behsa "piştgiriya zilaman" tê kirin, divê mirov bizanibe bê ev wate derdorek çiqas berfireh hembêz dike. Gelo li ser ruyê erdê ji piştgiriya zilaman bi zirartir û xirabtir piştgiriyek din heye gelo? Ma erêkirina evqas şer, talan û wêrankirinê ne piştgiriya zilama ye...?

Belê, di nav van 100 kesên tecawizkarên zarokan de mezinên bajêr jî hebûne. Hemi jî zewicandî, xwedî mal û bavên baş bûne. Xwedêgiravî wek mirovên bi namûs dihatin naskirin. Heta tê gotin ku di nava tecawizkaran de esker, polîs û erkanên dewletê jî hebûne. Awira gelemprî balê dikşîne ser reşkirin û tunekirina delîlan. Ji ber mexdûr pir zaro û faîl jî dewlemend in, kîna civakê berê xwe daye malbatên zarokan.

Baş e, li vê xaka ku evqas zarok lê tên tecawizkirin û îşkencekirin, jiyan çawa didome? Mirov çawa bi giraniya wîjdanê neparastina zarokan derdikeve serî? Gava erkanên dewletê nîqaşa makezgonê, eskeriya bedelî û babetên din dikin, gelo şermezariya bûyerên ku di ber guhê wan de dibin bandora xwe nadin dengê wan?

Ez dixwazim çavkaniyek sala çûyî bi we re par vekim...

Di derbarê xebitandina zarokan de Tirkiye, piştî Kenya, Bangladeş û Haîtî, di rêza çaran cîh digre. Qeydên karxaneyên ku bi sed hezaran zarok lê dixebitin tune ne. Li Tirkiyê ji sedî pêncên zarokan berî 12 saliya xwe dest bi xebatê dikin. Bi ser de ji sedî 60'ên wan 11-12 saetan dixebitin. Tirkiye ji alî UNICEF'ê ve di nav rêza 25 welatên ku zarokên keç naçin dibistanê de hatiye bicihkirin. Hejmara zarokên ku derdikevin ser kursiya darizandinê her ku diçe zêdetirdibe. Zarok ji sedî 72 ji malbatê, ji sedî 22 ji mamosteyên xwe lêdanê dixwin. Ji her sê zarokan yek raserî destdirêjiyê tê. Bi ser ku 15 sal di ser îmzekirina Peymana Parastina Zarokan re debas bûye jî, hê ti gavên berbiçav nehatine avêtin.

Belê, bêyî ku bi hezaran hêviyên li pişt derabeyên hesin bên dîtin, bêyî ku xwedî li jiyana zarokên nav zeviyên mayinan bê derketin, bêyî ku awazên zarokên mexdûr bên bihîztin, berdin bela guhertina makzagonê bê nîqaşkirin….

Ev civak hezkirin û xwedîlêderketina zarokan nizane. Herdem dikare li hember zilamên girgirekên tecawizkar ên zarokan bêdeng be. Nabîne, nabihîze. Piştî kuştin, îşkencekirin û bi erdê ve kişkişandina zarokan carek tenê jî qiyamet ranabe. Nikare zarokan ji birçîbûn, bêhezî, serme û tecawizan biparêze. Çavên zarokan li dûr aliqî, rawest û şil e...Ji bîr dibe ku pêşeroja civakekê di çavên zarokan de veşartî ye.

Belê, tabloya heyî bi gotinek herî sivik komkujî ye. Ji ber xwekuştina civakekê bi kuştina zarokan dest pê dike.

# *Pêwîstiya siyasetvanan bi rojnamevanan tune*

**WLADIMIR VAN WILGENBURG**
vvanwilgenburg@gmail.com



Pir car rojnameyên kurdî gazinan ji siyasetvanên xwe dikin: "Çima siyasetvanên mezin wek Mesûd Barzanî, Celal Talabanî û Noşîrwan Mistefa bi wan re hevpeyvînan çênakin?" lê xelkên biyanî yên weke min, bi hêsanî dikarin wan hevpeyvînan çêbikin.

Pirsa ku derdikeve holê ev e, çima divê siyasetvanek bixwaze li gel rojnamevanekî baxive. Ew pir car hevpeyvînan dikin da ku ji xwe re reklamê bikin. Yan jî dixwazin bi wê hevpeyvînê 'tiştên ne zelal' ronî bikin. Bo mînak, Lahur Talabanî gelek hez dikir di hevpeyvînekê de ew tiştên neyênî yên ku Tevgera Goran li dijî wî di gotin, derew derxe. Pirsgirêk ew e di Kurdistanê de siyasetvanan kanalên medya yên taybet bi xwe hene. Wek Amerîka, piraniya medya li Kurdistanê di destê partiyeke siyasî de ne yan jî alîgirê wê partiyê ne. Dema kesek bikare li ser kanaleke xwe ya medyayê şiroveyeke biçûk biweşîne, gelo çi pêwîst e ku li gel rojnamevaneke rexnegir hevpeyvînê çêbike?

Herwiha pirsgirêkên din jî hene. Li Kurdistanê baweriya siyasetvanan bi rojnamegeran tuneye. Ew gelek ji guherîna naveroka hevpeyvînan û çêkirina çîrokên ne rast ji aliyê wan ditirsin. Li Kurdistanê pir car rojnameger yan çalakvan in, yan jî ser bi partiyeke siyasî ne. Ev jî gelek car dibe sedema ku pirsgirêk derkevin holê. Beşê Rojnamegeriya Kolej û Peymangehan li Kurdistanê, derdê lawaziya metoda xwendinê dikşînin, loma jî ew kesên bo Rûdawê kar dikin, divê hemû hevpeyvînekê bi tevahî bi deng tomar bikin. Sedema wêya jî ew e ku ji aliyekê tirsa vekirina dozê li dadgehê heye û ji aliyê din jî Rûdaw dixwaze baweriyê li cem siyasetvanan çêbike. Lewra siyasetvanên kurd hez dikin zû zû bi sedema wan daxwiyaniyên ku berê dane, poşman dibin.

Herwiha ji siyasetvanekî re giring e ku hevpeyvîna wî bi başî bê xwendin. Loma jî çima dema siyasetvanek nikare bi başî baxive, divê em çaverê bikin hevpeyvîna wî bi berfirehî bê xwendin. Li Kurdistanê gelek rojname û kovar tên weşandin, lê hê kultura xwendinê çênebûye. Li Holanda ku nifûsa wê digihe 16 milyon kes, bi qasê Kurdistana Îraqê rojname nayên weşandin, ku nifûsa wê herêmê derdora 4 -5 milyon kes dibe.

Rojnameyên biyanî û erebî ji aliyê grûpeke zêde ya xelkê tên xwendin. Herwiha siyasetvan jî wan rojnameyan zêde cihê bawerî û profesyoneltir dihesibînin. Bo nimûne, dema Berhem Salih yan Noşîrwan Mistefa dixwazin peyamekê bighînin neteweyekê, bo vê mebestê kîjan rojname baştir e: Yekem; Rojnameyeke herêmî ya kurdî ku rojnamevanek rexnegir heye û kêm jî tê xwendin. Yan jî rêya dûwem; Rojnameyeke biyanî ku rojnamevanê/a wê zanyariyên kêm hene lê xwedî xwendevaneke zêde ne? Bêguman hemû hevpeyvîneke nav medyayeke biyanî û erebî zû bi zimanê kurdî tê wergerandin.

Herwiha siyasetvanên kurdî jî wan rojnameyan ji rojanemyên herêmî bêalîtir dihesibînin. Gelek car çêkirina hevpeyvînê li gel kesekî girêdayî PDK, YNK û Goran dikare pirsgirêkên mezin biafirîne. Lewra jî gelek siyasetvan hez dikin hevpeyvînan li gel medyayên erebî pêk bînin ku di hemû Rojhilata Navnîn tê weşandin. Yan li gel rojnameyeke Rojavayî ku dibe li Ewrûpa bo zêdeyî zimanekî bê wergerandin. Bo mînak, dema min hevpeyvînek li gel Mesrûr Barzanî çêkir, li hemû cîhanê hat wergerandin û heta li Waşîngtonê jî hatibû xwendin. Herwiha min guhdarî kir ku gelek televizyonên kurdî jî behsa wê hevpeyvînê kiribûn.

Lê pirs ew e, rojnamegerên kurd çawa dikarin wê pirsgirêkê çareser bikin? Gelo ma çareserî ne ew e ku divê peywendiyên xwe di gel berpirsan bihêztir bikin? Herwiha hewl bidin profesyoneltir bin û xwendevanên zêde ji xwe re peyda bikin? Axaftin ji kirin û encamdanê hêsantir e. Herwiha divê herdem derfet bo pirsên rexneyî bimîne.

# Partiya zikmezinan


Xaltîka Fatê

Silav xaltîka Fatê...

Navê min Siyamend e, lê ji min re dibêjin Siyamendo. Car carna serê xwe bi huner û siyasetê re dêşînim, lê dikim û nakim ne dibim hunermend û ne jî siyasetmedar. De min go a baş ezê xwe bavêjim tor û bextê xaltîka xwe Fatê û pê bişêwirim bê ka tu tiştek ji min derdikeve yan na.

Ji alîyê din, piştî min nîqaşên li ser pêşmergeyên zikmezin û tofana ku anîn serê Şivan xwend, hunermendî li ber çavê min reş bû û ez dibêjim ezê dev ji siyasetê jî berdim. Ez di bextê te û doxîna te de me xaltîka Fatê, şîretekê li min bike berî ku ez xwe "harakîrî" bikim û xelas...

**Siyamendo**
Almanya

**Bersiva xaltîka Fatê**

Law Siyamendko, ewladim, ji xwe çi hatibe serê Kurdan ji vê şorba nîskê hatiye serê wan. Kesên hunermend dibin siyasetmedar, siyasetmedar dibin hunermend, etar dibin bazirgan, bazirgan dibin profesor, profesor dibin xwarinpêj, mêr dibin jin û jin dibin mêr, yanî herkes dixwaze bibe her tişt û lotikên bêîman bavêje. Êêêêê, encam dibe çi? Dibe şorba nîskê!

Kurê min Siyamendo, weyla xwedê nehişto, hunermendî nizanim, lê partîyek ji Kurdan re ferz e. Ez dibêjim partîyek bi navê "Partîya Zikmezinên Kurdistanê" damezrîne û bibe serokê wê. Heger tu ji heq serokatîyê derneket, wê gavê restorantek bi navê "Zikmezin Restorant" veke û xizmeta zikmezinên Kurdistanê bike. Hunermendên Kurd tev birçî û parsek in Siyamend efendî. Ya baş bi ya xaltîka xwe Fatê bike û mezin bifikire oxlim. Yanî, ji serokatîyê pêve çavê xwe bernede tişekî din. Yan serokatîya Partîya Zikmezinên Kurdistanê, yan jî serokê "Zikmezinler Restorant" û xelas...

Haaaaa, heger te biryara xwe neda û tu di navbera Xelîl û Celîl de ma, were ezê "Psîko analîzekê"li ser mejîyê te bikim cîgerim. Belkî çend bizmar û teneke ji mejîyê te kêm bin ha, okey!




# Xaçepirs

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | ■ | | | | | | | |
| 2 | | | | | | | ■ | | | | ■ | |
| 3 | | | | ■ | | | | | | | | |
| 4 | ■ | | | | ■ | | ■ | | ■ | | | |
| 5 | | | ■ | | | | | ■ | | ■ | | |
| 6 | | | | | | ■ | | | | | | |
| 7 | | | | | | ■ | ■ | | | | ■ | |
| 8 | ■ | | | | | | ■ | | | ■ | | ■ |
| 9 | | | | | ■ | | | | ■ | | | |
| 10 | | ■ | | | | | | | | ■ | | |
| 11 | | | | | | ■ | | | | | | |
| 12 | | | | | | | | ■ | | | | |

**Çeperast**
Başe, rinde (paşûpêş)- Edavgirtina hestîyên dora çav û bêvilê. 2- Heywanek studirêj – Alaya piçûk. 3- Genimê hêrayî, jê nan çêdibe – Tedarikkar, kesê ku amade dike. 4- Ne nêzîk, iraq – Ne doh, ne sibê, roja em têde. 5-Pêvoka "tê de" – hawar, gazî – Du tîpên bêdeng. 6- Îsaparêz, fileh – Têrnebûn, çavbirçîtî (paşûpêş). 7- Paşnavê hunermendekî Ereb, Ferît... – Sembola millet û welatek. 8- Navekî zilaman – Ne tûj, nabirre. 9- Awaz, seda (paşûpêş) – Azadkirin, lêborîn – Pevçûn, hevkujtin. 10- Tevger, çûn û hatin – Notayek. 11- Serbest e, navekî jinan (paşûpêş) – Berhemek şanogerî ya Şakespîer. 12- Kanîya rengreş – Li Swîsreyê navê çemekî.

**Serejêr**
Êşkence, cefa, ezîyet – Nîşandana rêzewêneyan – Kesên Greklandî. 2- Welatek Rojhilata Navîn – Lê vegerand, bi paşde vegerand. 3- Qal û qirş, sotemenî – Navekî zilaman. 4- Li hinek ciyan ji "çayê" re dibêjin – Kesê ji bajarê Rewandizê. 5- Notayek – Navekî zilamên Balkanî – Şirove, nirx (paşûpêş). 6- Dans û reqsek Latîn Amerîkî – Kurtkirina "nebat", nebe. 7- Rojek (paşûpêş) – Ne li rê, dûrî tore û adetê. 8- Navekî zilaman – Mafya Japonan. 9- Gotina telefonê (paşûpêş) – Civîna bi dans û şahî – Ne rastûrast, gotina sergirtî. 10- Navekî zilaman, zîrek – Ap, brayê bavê (paşûpêş) – Notayek. 11- Navekî jinan, nîjadek – Rêwîtî, seyran, çûn. 12- Bajarekî Kanadayê – Çerçî, dikandarên seyar (paşûpêş)

# Tendirustî



## Stres

Stres bûye parçeyek ji jiyana mirovan, parçeyek ne baş û xerab. Bi taybet li bajarên mezin stres meriv ji taqat dixe û dibe sedema nexweşîyên mezin. Giranbûna şertên jiyanê, çûn û hatina kar, mezinkirina zarokan û kişandina derdê wan, pirsgirêkên malbatî û civakî, gava ev tev dikevin ser hev meriv bike neke di nava stresê de dixeniqe û ji ta-qat dikeve, nexweş dibe.

Ji bo rêlibergirtina stresê gavên herî girîng ev in:

- Xwe û sedemên ku dibin sedema stresa we binasin.
- Têkilîyên baş bi derûxorê re deynin, dora xwe baş binasin.
- Bedena xwe kontrol bikin, nehêlin bedena we radestî stresê bibe.
- Bi pîvan xwarinê bixwin, xwe bi xwarina zêde newestînin û zirarê nedin bedena xwe
- Karê îro nehêlin sibê. Gava kar tev ket ser hev, mirov di binde dikeve.
- Nebin koleyê demê. Ji tiştên ku hûn nikaribin bikin re bêjin: Na!
- Xwe mezin nekin û nebêjin "ez karim her karî bikim."
- Li rehetîya canê xwe binerin, zêdeyî giranîya xwe nekevin bin bar.
- Wextê xwe ji sporê re veqetînin, qîmetê bidin bedena xwe.
- Heftê herî kêm rojekê bêhna xwe berdin û bedena xwe ji stresa rojûn çûyî azad bikin.



Helbet di rewşa îro de stres sedî sed xelas nabe. Lê bi van xalên jor hûn karin stresa xwe kêmtir bikin û zû bi zû nekevin nav çerxa nexweşîyan.

# Henek

Rojekê kalemêrek serpêhatiyên xwe yên şer ji neviyê xwe re dibêje. Dibêje, dibêje û dibilîne. Kalo ji neviyê xwe re dibê:

"Rojekê em di şer de hêsîr ketin û em komek esker ketin destê dijmin".

Nevî bi meraq dibê:

"Êêêêêêê!"

Kalo dibê:

"Serdarê dijmin ji me pirsî: Hûn dixwazin em we bikujin yan em tecawizî we bikin û we serbest berdin?"

Nevî:

"Êêêêêê, hella hellaaaa"

Kalo:

"Me ji serdarê dijmin re got: "Me bikuje" û em tev kujtin".

Nevî:

"Va tu nehatiye kujtin, tu sax î kalo"

Kalo bi rûyekî tirş:

"De wêde here bênamûs, ma ezê bêjim dijmin tecawizî me kir ha!"





## Nîştî Stêrk: TRT gelek dixwest ez bimînim

Di daxuyaniyeke taybet de ji bo Rûdaw Nîştî Stêrk pêşkêşkara bernameya Gulfiroş a di TRT-6'ê de dibêje wê dest ji karê xwe berda, lê ne ji ber ku navbera wê û TRT xera bû. "Kar û projeyên min ên din hene li vir li Swêdê, lewma ez vegeriyam," şanogera kurd ku demek e li Swêd dijî ji me re dibêje. Li ser pirsa ku gelo di navbera hevkarê Nîştî di bernamê de Berdan Mardînî û wê de tu nexweşî çêbûne, Nîştî bi rûkenî dibêje: "Na tiştekî wusa nîn e. Niha jî Berdan gelek dixwaze ez vegerim û pê re programê çê kim. Lê mixabin niha projeyên min ên din hene." Nîştî, ku niha naxwaze qala projeyên xwê yên nû bike, herwiha got di TRT-6'ê de kesî jê re negotiye ew kîjan termînolojiyê bi kar bîne. "Tenê piştî ku me du-sê car got 'Kurdistan' gotin belkî çêtir be hûn termên din bi kar bînin." (SBE)

## Mastê tirkan yûnanî aciz kirin




Ji ber belavbûna wêneyê wî li ser satileke mast, mirovekî yûnanî bi navê Atasyos Wezranakos gilînameyekê dijî şîrketa Lindale ya swêdî, ya ku mastê tirkî "Turkish Yoghurt" berhem tine, tomar kir.

Atasyos daxwaza 6 milyon û 900 hezar Dolaran wek seza ji şîrketa swêdî ya ku wêneyê wî li ser satila mastê tirkî belav kiriye dike. Atasyos ku ji ber simbêlên xwe xwedî rûyekî taybet e, bi rêya hevalekî xwe yê ku li Swêdê dijî hatiye agahdarkirin ku wêneyê wî bi vî awayî hatiye belavkirin. Navbirî dema vê nûçeyê dibihîze pir aciz dibe.

Şîrketa Lindale ya swêdî jî ragihand, wê wêneyê Atasyos ji saziyeke wênegiriyê kiriye û xwediyê wêne nas nake.

## Ciwanekî Îraqî dibe bejinkurtê cîhanê?

Ebûcî zarokekî Îraqî yê 15 salî ye û hêvî dike navê wî bikeve kitêba Guinness a şikandina pîvanan wek biçûktirîn kur li cîhanê ku dirêjiya wî nagihîje 45 cm an.

Bejina Ebûcî nêzîka 27 cm ye û ji bejinkurtê Çînî yê koçkirî Hi Bing Bing dirêjtir e, ku navê wî ket kitêbe Guinness wek biçûktirîn mirov li cîhanê. Ebûcî li bajarê Nasrya dijî û gelek hevalên wî hene ku piraniya wan zarok in.

Dayika Ebûcî dibêje: "Pirsgirêkên kurê min ji bejina wî bilindtir in û herdem pirsgirêkan derdixe û ewqasî har e ku pisîkan jî digre. Dema jidayik bû bejina wî nêzîka 10 cm bû û nîv kg jî giran bû."

Chou Hay Chin ê Çînî weke biçûktirîn jin li cîhanê kitêba Guinness û dirêjiya bejna wê 79 cm û giraniya wê jî 10 kg e. Dema hê di temenê zarokatiyê de rastî nexweşiyê hatiye û geşbûna laşê wê rawestiyaye.



## Cilên ji dîzayna Pixie Lott

Stêrka muzîka Pop a brîtanî, Pixie Lott, bi hevkariya markeya bazirganî ya brîtanî, Lipsy, dîzayna yekemîn koma cilûbergên xwe çêkir û di 28 Nîsan a borî de ew modeya cilan daxistin bazaran.

Pixie Lott a 19 salî dîzayna vê koma cilûbergan bi şêweyekî taybet û nû amade kiriye. Bêtiriya cilên wê ji perûk (qumaş) nerim û pembî hatine çêkirin û tameke wan a hevdem heye. Ew cilên rojane ne, di nav wan de kirasên dirêj, kurt û yên bi bersîngên vekirî jî hene. Pixie Lott dibêje ku wê her tim cilên ji markeya Lipsy li xwe kirine û ew şanaziyê bi vî karê xwe yê di gel wê markeyê dike.





## Li Tunis, bazara goştê keran germ e

Li welatê Tunis ji ber giranbûna buhayê goştê bizin, mange û hemû curên din ên goşt, xelkên hejar û destkurt û bi taybet rûniştvanên derdora paytextê, berê xwe dane goştê keran û her ku diçe ew bazar li wî welatê erebî gerim dibe.

Derbarê vê mijarê de hin rojnameyên tunisî dibêjin ku kîloya goştê bizinan bi 10 Dolaran e, lê kîloya goş-tê keran bi 3.5 Dolaran e. Herwiha diyarkirine ku di bin çavdêriya "sîstema pizîşkî" de di hefteyê de dukandarên goştfiroş 13 to-nên goştê keran difiroşin. Pizîşk jî eşkere dikin ku xwarina goştê keran ne tiştekî qedexekirî ye, ji ber ku zirara xwarina wî goştî tune.